Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranekî Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 19
Maya 2005
Biha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameyeke mehane ya siyasî û çandî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Daxuyaniya Deftera Siyasî bi hinceta gera nehemîn ya hilbijartina Serok Komariyê

Rûpela 5

# HILBIJARTINA SEROK KOMARIYA ÎRANÊ BAYKOT BIKIN

Piştî sefereke çend heyvî

## Sekreterê Giştî yê Partiyê vegeriya Kurdistanê



Di destpêka heyva Banemerê de, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê hevalê xebatkar Mistefa Hicrî, piştî sefereke çend mehî bo Ewropa, vegeriya Kurdistanê. Di heyamê vê seferê de ku nêzîk bi çar heyvan dom kir, Sekreterê Giştî yê Partiyê, seredana çend welatên Ewropayê kir û di her welatekê de çendîn kombûn û civînên hizbî, hevdîtinên siyasî û dîplomatîk û gotûbêj tevî ragihandin û çapemeniyan pêk anîn. Piştî vegeriyana Kekê Mistefa Hicrî, Radyoya Dengê Kurdistana Îranê hevpeyvînek di vê derheqê de pê re çê kir. Di vê gotûbêjê de Sekreterê Giştî yê Partiyê armanc û mebestên vê seferê, helwêst, nêrîn û dîtinên rêberiya Partiya Demokrat li hember bûyer û pirsên herî girîng yên rojevê şirove diket. Deqa vê hevpeyvînê di rûpela 2 ya vê hejmara Agirî de bixwînin.

## Qanûna neçarkirina dewleta Komara Îslamî ya Îranê bo bidestxistina Teknolojiya Etomî




Di van çend rojên çoyî de Şêwra Nobedar ya rejîmê biryarnameyek pejirandî ye ku tê de dewlet neçar tê kirin ku xebatên bidestxistina çekên Etomî bimeşîne. Herwiha di 15'ê vê mehê de jî Meclisa Şêwra Îslamî ya Îranê,s biryarek pesend kir ku tê de ji dewletê dixwaze ji bo berhemanîna şewat û çekên Etomî xebatên xwe dest pê bike ku dewlemendkirina Uraniyûmê parek ji wê ye. Dewleta Îslamî ya Îranê dibêje ku bernameyên wê yên Etomî aştîxwazane û tenê ji bo berhemanîna Elekterîk (kehreb)ê ye. Lê raya giştî ya cîhanê û nemaze Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê zext û givaşeke zaf xistine ser dewleta Îranê ku dest ji çêkirina çekên Etomî û dewlemendkirina Uraniyûmê hil bigire.
Raya navneteweyî ya cîhanê xebatên Etomî yên Îranê bi gef, tirs û xetereke mezin ji bo aştî û tenahiya welatên cîhanê dizanin.

**Jêder: Voanews**



## **Rays:** Nabe Îran bibe xwediyê çekên Etomî



Kondalîza Rays, Wezîra Karê Derve ya Amerîka, di hevpeyvîneke de tevî malpera taybet ya Wezareta Karê Derve ya Amerîka de, da zanîn ku heke Îran bibe xwediyê çekên Etomî, dê rewşeke gelek xeter pêk bihêt. Herwiha Rays anî ziman ku bidestxistina çekên Etomî ji aliyê hikûmeta Îslamî ya Îranê ve dê bibe sebebê pêkhatina rewşa awarte ya cihê tirsê.



## Şêrko Bêkes ji bo Agirî dipeyive

Rûpela 16-17

**Sekreterê Giştî yê Partiyê, birêz Mistefa Hicrî:**

# Di Îranê de Serok Komarî û herwiha Parleman du tiştên sembolîk in ji bo xapandina xelkê cîhanê, ev jî ji bo vê çendê ye ku bibêjin em hikûmetekî nûjen û îroyî ne û dam û dezgehên me yên hikûmetî ji rêya hilbijartinê ve tên ser kar

**Kekê Mistefa berî hemû tişteké ez bixêrhatina te dikim û zor spas bo vê ku te dema xwe bi me re veqetand û di vê hevpeyvînê de pişikdarî kir. Ez dê bi vê pirsiyarê dest pê bikim ku merema cenabê te ji vê seferê bo derveyî welat çi bû?**

Ez jî gelek spasiya we dikim ji bo vê çendê ku we ev derfete pêk anî ku bikarim kar û barên sefera xwe bo derveyî welat di gel guhdarên Radyo Dengê Kurdistana Îranê bas bikim. Wekî hûn haydar in di meha çar a sala borî de sêzdehemîn Kongireya Partiya me bi serkevtin ve dawî pê hat. Wê Kongireyê hin guhertin di partiyê de pêk anîn ku yek ji wan guhertinên girîng, guherîna dirûşma stiratêjîk ya partiyê ji **Demokrasî bo Îranê û Otonomî bo Kurdistanê** ku bi salan bû partiyê ev silogane hilgirtibû. Ev dirûşme di vê Kongireyê de bi **avakirina sîstemekî Demokratîk û Federal di Îranê de û bidestveanîna mafên gelê Kurd di vê çarçoveyê de** hate guherîn.



Me, rêberiya partiyê bi hewce zanî ku Sekreterê Giştî yê Partiyê seferekê bo derveyî welêt bike, bo vê ku tevî dost û hevalên me li Ewropa, tevî Opozîsyûna Îranî û herwiha tevî Rêxistinên Kurdî di hevdîtinên "hizûrî" de ji nêzîk ve encama guhertinan bide xuya kirin. Eva parek ji erkên sereke yên min bûn di vê seferê de. Wekî hûn haydar in ji bilî vana me hejmareke zaf endamên çeleng û jêhat li derveyî welêt û di welatên Ewropayê de hene ku kar û tekoşîna wan heye û hewce bû di gel wan de him derheq van guhertinane rûniştin hebin û herwiha bersîvdana wan pirsiyarên ku renge bo her yek ji wan di vê midehê de hatibine holê. Herwiha berhevdana kar û çalakiyên wan hevalane li derve.

Xincî pêwendîgirtin bi Rêxistinên Opozîsyûna Îranî çi Kurd û ne Kurd ku me bi hev re pêwendî heye û serokatiya parek ji wan li derveyî welêt de ye, hevdîtinan bikin bo wê ku siyaseta nû ya Partiya Demokrat di gel wan rêxistinane de bas bikin û careke din jî pêwendiya xwe bi wan re nû bikin û siyaseta Partiya Demokrat di vê Kongireyê de bi wan re eyan bikin. Eva bû ku ji aliyê rêberiya Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê ve ev memûriyete bi min hate spartin ku biçime derveyî welat û wan karan cî be cî bikim û gelek keyfxweş im ku piştî encam dana memûriyetan, careke din vegeriyame nava hevalên şoreşvan, Kadro û Pêşmergeyên dilsoj yên Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê.

**Bi li berçav girtina guhertinên Rojhilata Navîn û herwiha ketine nav bazneya roj li şûn roj ya Îranê ji civaka navneteweyî, gelo tu guhertinek di helwesta Ewropayiyan bi nîsbet Îranê de pêk hatiye?**

Di rastî de mirov nikare qezaweteke giştî di vî warê de bike. Ji bilî wê ku Ewropî wekî Yekîtiya Ewropayê li wir de hevdigirin û siyaseteke yekbûyî pêş xwe digirin. Bi nîsbet zaf pirsên ji derveyî xwe ku yek ji wan Îran e, dema ku mirov tevî wan rûniştinan pêk tîne û bi wan re dipeyive, cudahî di dîtin û nêrînên wan derheq bi Îran û xalên din yên girêdayî bi cîhanê de heye. Ger di rabihorî de hejmareke berbiçav ji welatan li ser vê baweriyê bûn ku dikarin ji rêya gotûbêjan guhertinan di Îranê de pêk bînin, lê niha ev rewşe hatiye guhartin. Wekî hûn haydar in 10-12 salan berî niha Ewropa siyasetek li hember Îranê pêş xwe girtiye ku bi xwe nav lê xistibûn siyaseta **Diyaloga Rexnegirane.** Bi vê manayê ku diyaloga xwe tevî Îranê dê biparêzin, pêwendiya xwe biparêzin û hevdîtinan bikin û ji nêzîk ve û di wan rûniştinan de rexneyên xwe derheq mafê mirovan û pirsên din ku ji bo wan têne pêş ji Îranê bigirin, bi vê hêviyê ku Îranê bi wan gotûbêj û nêzîkbûnan ber bi azadî û mafê mirovan ve pal bidin, lê ceribîna salên borî yên Ewropayiyan di gel Îranê bo hemûyan daye eyanê ku Komara Îslamî ya Îranê di vê midehê de ne her bi vê siyasetê guhertinek tê de pêk nehatiye, belkî roj bo rojê xiraptir bûye û di vê derheqê de nimûne û mînakên zaf hene ku me li ser wan tekez kiriye. Bo mînak hilbijartinên gera 7'an ya Parlemanê ku tê de Meclis yekdest

hatiye kirin, bin pê kirina mafê jinan, maytêkirina Îranê di kar û barên welatên cînar bi taybetî Îraqê, evane û gelek nimûneyên din hebûn ku me bas kirin û Ewropayî jî bi xwe haydarê vê pirsê bûn. Lewra ez nikarim bibêjim Ewropayî bi nisbet Îranê wekî hev difikirin, lê heta niha jî ev derfete bi Îranê dane ku bi terzê gotûbêjê biçine pêş, bona wê çendê ku bikarin ev pirsgirêkên ku di rabihorî di pêwendî tevî azadiyê de hebûn, bi taybet niha pirsekî girîngtir ji wê jî ku pirsa çekên Etomî ye ku Îran ber bi wê diçe wê bidest bixe, di gotûbêjan de ne. Hetanî ku ji rêya gotûbêjan ve bikarin vê pirsê çareser bikin. Her çend hindî ku ez ji nêzîk ve di gel Ewropayiyan axivîm, parek ji wan derheq pêşeroja van gotûbjane bê hêvî ne, lê dîsan jî her dixwezin vê rêyê bidomînin. Lê xwezayî ye ku li ser vê pirsê rawestane ku Îran nabe çekên Etomî hebe û hitbarê jî pê nakin û mîna welateke yaxî çav lê dikin û nigeranê vê çendê ne ku eger rojekê destê Îranê bi çekên Etomî bigihîje, heta heke bo mifah wergirtina senetî jî be, dikare bi guhertinekê, biguhere bi çekên Etomî û arîşeyeke mezin bo cîhanê û parek ji cîhanê ku Ewropa ye û ji Îranê jî nêzîk e, pêk bîne. Lewra nêrîna Ewropayiyan di vê derheqê de guherî ye. Diyar e gelek xwezayî ye ku hevdîtinên min jî ji nêzîk ve tevî wan û şiroveya vê rewşa ku di Îranê de heye, li dor meseleya azadî, li dor binpêkirina mafên neteweyên Îranê, ew ferq û cudahiya ku di Îranê de heye û ev ne kêrhatîbûna ku desthilatdarên Îranê derheq bi Îranê dikin, evane hin pirs û mesele bûn ku alîkarî bi ronbûna zêdetir ya Ewropayiyan da.

**Herwekî cenabê te di destpêkê de îşare pê kir ku yek ji guhertinên Kongireya 13'an a Partiyê, guherîna dirûşma stiratêjîk ji Otonomiyê ve bo Federalîzmê bû. Helwesta partî, rêxistin û kesayetiyên Ewropayî û Îranî li derveyî welat li hember vê guhertinê çi bû?**

Eva ku pêwendî bi Ewropayiyan ve heye, ez dikarim bibêjim yên ku ez bi wan re rûniştim û hejmara wan jî zaf bûn, piranî ev siyaset û guhertine pesend kirin, û li ser vê bawerê bûn ku pirsa Federalîzmê, pirsa îro ya cîhanê ye, terz û metodeke adîlane ya siyasî di birêvebirina welat de ye, ji ber ku di Federalîzmê de dikare mafê wekhev bo netewan bihête berçavgirtin û li ser vê baweriyê ne ku neteweyên Îranê bi wê metodê dikarin tevî wê ku di çarçoveya Îranê de bi hev re bijîn û bo avedankirina Îranê jî cehdê bikin, xwediyê mafê wekhev bin û daxwazkarane di Îranê de bimînin, eva nêrînek bû ku bi giştî hemû Ewropayiyan hebû û di vê derheqê de piştgiriya partiya me dikirin, û li ser vê baweriyê bûn ku ev guhertine, guhertineke demokratîk e û pîrozbahî ji me seba diyarî kirina vê dirûşmê dikirin.

Eva ku dimîne ser hêzên Opozîsyûna Îranî, yên ku me têkilî bi van re heye, wekî hin ji partiyên çep yên Îranî, hin ji partî û kesayetiyên demokrat yên Îranî, wan jî jêve ne ku ev guhertine ku di Kongireya partiyê de li ser dirûşma partiyê hatiye, dirûşmekî baş e, pareke zaf ji wan jî bi xwe li ser vê baweriyê ne ku tenê tiştê ku yekbûn û yekîtiya Îranê garantî dike, razî bûna neteweyên Îranê ye, ji ber ku niha serdem, serdemê azadbûna netewan e. Berevajî vê ku Komara Îslamî ya Îranê qezawetê dike û jêve ye ku mafê netewan, çi bi metoda Otonomî û çi bi terzê Federalîzmê be, eva gavek ber bi cudabûnê ye, van hêzane jêve ne berevaj e, rêya hevgirtinê di çarçoveya coxrafiyayî ya Îranê de ev rêye ye ku me bawerî pê heye û dirûşma para herî zaf ya wan her di pêşerojê de Îranekî Federal e. Xuya ye ku hin partî û kesayetiyên din jî hene ku bi rastî hêj ji guhertinên cîhan û ji rastiyên deverê tê negihîştine û terzeke şovînîzmê bi ser ramana wan de zal e.

Wan niha jî jêve ye dema ku bas ji pirsa neteweyî dikin, dema ku basê ji mafê netewan dikin, ew ber bi cudabûn ji Îranê ye, ew parvekirina Îranê ye û bi vî terzî bi tundî rû bi rûyî hev û din dikin! Lê bi xweşî ve ez bi erxayînî ve dikarim bibêjim ku eger li berê pareke zaf ji xelkê Îranê bi vî awayî difikirîn, niha zaf in ew rêxistin, partî, navend û rewşenbîrên Îranî bi taybet yên ku di ramana wan de ye ku Îran yekparçe bimîne, meseleya Federaliyê ji bo wan di holê de ye.

Diyare Federalîzim mijarek nine ku tenê ji aliyê Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê yan hêzên din yên Opozîsyûna Kurdî yên Îranê ve hatibe bas kirin, ji ber ku niha mijara Federalîzmê basek e ku di nava kom û civînên rewşenbîrî yên Îranê û di nava hin kesayetiyan ku ji guhertinan tê gihîştine, di Îranê de bas li ser tê kirin û niha taboya wê hatiye şikandin ku kesek di hundirê Îranê de nekare li ser vê mijarê bas bike, ji ber ku bûye baseke rojevê ku xelk fikrê lê dikin û basê li ser dikin û ez bawer im ku divêt em jî zêdetir cehda xwe bikin ku ji piropagendeyên xwe vê mijarê zaftir bikin mijara rojevê ji bo Îraniyan. Yanî li cihê wê ku tenê hikûmeta Komara Îslamî ya Îranê bi dezgehên piropagendeyî û îmkanatên zaf ku di dest de heye, piropagendê dijî mafên neteweyî dike û her terze maf û bizaveke neteweyî li çarçoveya parvebûna Îranê û girêdayîbûn bi biyaniyan dihesibîne. Em wekî Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê, wekî hêzên demokratî yên Kurdên Îranê ku me bawerî bi mafê neteweyî heye û herweha azadîxwezên din yên Îranî ku baweriya wan bi vê bernameyê heye, bikarîn bi piropagendeyên xwe, van piropagendeyên ku Komara Îslamî dike û ew "sempaşî"ya ku bi dijî mafê netewan dike, bikarin heya qasekê pûç û betal bikin.

**Kekê Mistefa çend mehan berî niha li 2'ê Reşemeya 1383'an de civîna nûnerên neteweyên bindest yên Îranê li bajarê London ya Înglistanê birêve çû. Ger tu bikarî derheq bi çawaniya pêkhatina vê komcivînê û encamên wê ji me re bas bike?**

Belê, ew ji wan bernameyan bû ku di destûra karê ku bo min hatibû diyarî kirin û birêve çû. Wekî hûn dizanin midehekî zor e, ji mêj sale ku me pêwendî bi Rêxistinên Opozîsyûna ser bi Neteweyên Îranî heye. Zaf caran me cehd kiriye ku bikarîn di gel wan de yekîtî, enî û hevgirtinekê pêk bînin, lê bi sebebên zaf ku niha cihê qalê ninin, em serkevtî nebûne, lê di kongireya 13'an de û li şûn wê de jî di Komîteya Navendî de û herwiha di Deftera Siyasî de ev base bo me hate holê ku niha me nekariye yekîtiyeke bihêz di gel Opozîsyûna seranserî Îranê pêk bînin, em zortir dema xwe bêxne ser hevgirtin di gel rêxistinên neteweyên bindest yên Îranê.

Sedema wê jî eva bû ku me jêve bû neteweyên bindest yên Îranê wekî me di bin zulm û zorê de ne, stema ku li ser neteweya Kurd heye, bi awayekê li ser wan jî heye, êş û kulên me dizanin, em ji axavtinên hev baştir têdigihîjin û bi vê encamê gihîştine ku di gel wan li

ser terzê hevgirtinek ku cihê hêviya zêdetir e û dikare cihgirtîtir be, cehd û bizavê bikin. Lewre me piştî wan raspardane cehd kir ku ew pêwendiyên ku me di gel Rêxistinên Netweyên Îranê hebû, xurtir bikin, eva bû ku em di wê bervara ku te Îşare pê kir li Londonê kom bûn û me civînek bi beşdariya parek ji Rêxistinên Opozîsyûna ser bi Neteweyên Îranê ku bawerî bi Federalîzmê, bawerî bi meseleya neteweyî û maf û hiqûqên netewayetî di Îranê de bi awayê wekhev hebûn, pêk anî û em sax bûn û ev yekîtiye ku bi navê **Kongireya Neteweyên Îrana Federal** e, me pêk anî ku li ser bingeha Federalîzmê û li ser bingeha neteweyî û coxrafiyayî pêk hatiye. Bi vê wateyê ku ew neteweyên ku di coxrafiya diyarîkirî ya Îranê de dijîn, bikarin kar û barên hundir yên welatê xwe birêve bibin û di kar û barên giştî yên welatê Îranê de li gur nifûsa ku hene – paşan yasa diyarî dike - bikarin pişikdar bin. Eva karek bû ku me li wir kir. Bi xweşî ve dengvedanekî baş hebû û niha çend girûpên din jî piştî ragihandina vê Kongireyê, amadebûna xwe yê dane xuya kirin ku bibine endamê vê Kongireyê. Ez wiha dibînim ku ev kar ber bi pêş diçe û hêvîxwezim ku di pêşerojê de hin girûpên din yên Îranî, kesayetiyên din yên Îranî jî ji merema pêkhatina vê Kongireyê bihêne agehdar kirin û bibine endamê vê Kongireyê û Kongireya me bihêztir be. Lê eva tiştekî sirûştî ye ku hemû karek girêdayî bi vê ye ku çende yan heya çiqasekê piropagende jêre tê kirin, heya çiqasekê kar jêre bikî û çende cehd û tekoşînê bo bikî, bona vê çendê ku di nava gelên Îranê de cihê xwe bigre û xelk jî baş ji merema vê Kongireyê agehdar û halî bin. Em wekî Gelê Kurd û herwiha neteweyên din yên pişikdar di Kongireyê de li ser vê çendê hevdeng in ku em vê pirsê di nava xelkê xwe de teblîx bikin, wan tê bigehînin û bikarbin xelkê xwe hêdî hêdî li dora vê hevgirtinê kom bikin. Bi awayekê ku kongire bibe sembol û asoya hêvî û daxwazên neteweyên Îranê ji bo ku ev netewane bikaribin di hember ev guhartinên ku em di pêşerojê de çavnihêriya wan dikin, li ber xwe bidin û ji mafên xwe xwedî derkevin û herwiha rewş xweş nebe ji bo ku hikûmetekî din, bi navekî din (wekî çawa ku Komara Îslamî ev çende kir) bihê ser kar û mafên neteweyên Îranê binpê bike û hêzekî navendî pêk bîne ji bo tepeserkirina maf û azadiyên gelên bindest yên Îranê.

**Lidarxistina vê Kongireyê wekî meşekî dîrokî tê dîtin, hûn asoya vê Kongireyê çawa dibînin?**

Wekî ku min got, ez bawerim em wek PDK Îranê û Komele, ku du Partiyên Kurdî ne û herwiha nûnerên neteweyên din ku di Kongireyê de pişikdar in, eger bikaribin erkên xwe bi başî derheqî nasandina kongirê û armancên vê bi xelkên Îranê û cîhana derve, rêxistinên Ewropayî û Amerîka bi başî bi cî bînin. Ez bawerim wê gavê asoyeke ron dikeve pêşberî me. Ez baverim ev kongireye dê bikaribe hem piştevaniya xelkê Îranê û hem dostên azadîxwaz li derveyî welêt bo aliyê xwe bikişîne.

**Niha di nava kar û civînên hundir û derveyî Îranê de basa hilbijartina gera 9'an ya Serok Komariya Îranê di rojevê de ye, niha baskên rejîmê hewil didin ku tendûra vê hilbijartinê gerim ragirin û bi bername û pilanên cur bi cur dixwazin ku xelkê Îranê rakêşin ser sindoqên dengdanê. Raya PDK Îranê derheq vê hilbijartinê çiye?**

Eva pirsyarekî balkêş bû, ev pirsyare gelek caran di hevpeyvînên min tevî Ewropayiyan de dihate rojevê. Bersîva ku min dida wan û niha jî dixwazim bo ve eyan bikim eva ye ku Komîteya Navendî hêj tu daxuyanî di vê derheqê de dernexistine,(*) lê pêka ceribîna ku me di paşerojê de bidestve aniye û herwiha li gor ev rewşa ku di Îranê de heye, ez bawer im partiya me dê vê hilbijartinê baykot bike, ji ber ku sedemên vê jî eşkere ne, em wekî Kurd bi destê vê rejîmê gelek hatine zêrandin, lewra em bi başî haydarî çarçoveya siyasetên vê rejîmê ne, em dizanin ku di Îranê de her kesek di Îranê de bibe Serok Komar tu bandor li ser guharînên siyasî di Îranê de nabe, ji ber ku yê ku di Îranê de xwedî hêz û desthilatê sereke ye, Wilayeta Feqîh û dam û dezgehên jêr bandora wî wekî Şêwra Nobedar, Civata Diyarîkirina Berjewendiyên Nizamê û dezgehên

# Me Kongireya Neteweyên Îrana Federal li ser bingeha Neteweyî û Coxrafî pêk anî

bi vî rengî ne. Di Serok Komarî û herwiha Parleman Îranê de du tiştên sembolîk in ji bo xapandina xelkê cîhanê, ev jî ji bo vê çendê ye ku bibêjin em hikûmetekî nûjen û îroyî ne û dam û dezgehên me yên hikûmetî ji rêya hilbijartinê ve tên ser kar. Lê me giştan bi kiryar dîtiye ev nûnerên ku bi nav bi hilbijartinê hatine ser kar xwediyê tu desthilatekê ninin. Ji ber vê çendê ez bawerim beşdarî di hilbijartina vê care de dê gelek ji hilbijartina Meclisa Heftem kêmtir be. Kesê ku tê hilbijartin, heke gelek zor be, dê bibe Xatemiyekî din ku di heyamê hilbijartina xwe de gelek soz dan, xelkekî zaf mijûlî xwe kir, bi taybet Ewropî jî bawer bûn ku di serdemê Serok Komariya Xatemî û Reformxwazan de pirsa azadiyê dê di Îranê de çareser bibe, lê me hemûyan dît ku ev çende tenê xeyalek bû û ji bilî gotinên bê naverok tu tiştek wan negihîşte piratîka xwe. Ji ber vê çendê ez bawerim ku xelkê Îranê vê çendê baş dizanin û ev naçin ser sindoqên dengdanê. Ji ber ku Komara Îslamî di hemû hilbijartinên xwe de cure taktîkekê bi kar tîne, bo vê çendê ku xelkê Îranê bikişîne ser sindoqan û paşan wan di televizyonan de nîşanî cîhanê bidin ji bo ku bibêjin hikûmeta me xelkî û meşrû e, xelik piştevanê hikûmetê ne û di hikûmetê de pişikdar in. ji ber vê çendê ez bawerim xelk baş haydarî vê rewşê ne, wekî çawa ku di hilbijartina Meclîsa Heftem de jî beşdarî nekirin, ev çende jî mafê berheq yê xelkê Îranê ye, ji ber ku ev hikûmetê baş dinasin û lewre bi wî rengî riftarê dikin.

**Spas ji bo ku we ev derfete ji me re pêk anî.**

Ez jî spasiya we dikim.

(*) Ev hevpeyvîne berî derçûna daxuyaniya Deftera Siyasî ya PDK Îranê bi Radyo Dengê Kurdistana Îranê re hatiye kirin.

# Daxuyaniya Deftera Siyasî bi hinceta gera nehemîn ya hilbijartina Serok Komariyê

Hevwelatiyên birêz!

Xelkê xebatkar yê Kurdistanê!

Di Havîna îsal de gera çar salî ya Serok Komariya Mihemed Xatemî bi dawî tê û li gorî bernameya darêtî ya Şêwra Nobedar, di roja 27'ê Cozerdanê (17.06.2005) de ji bo gera nehemîn ya Serok Komariyê hilbijartin tê kirin. Rejîm vê carê jî wekî berê ji hemû pîlan û fêlan mifahê werdigire ji bo wê çendê ku xelkê bikişîne ser sindoqên dengdanê û bi vî awayî rûçikeke berheq û demokratîk bi desthilata xwe bide. Lê ceribînên hilbijartinên wan çend salên dawiyê wê rastiyê eşkere diket ku xelk dê vê carê gelek bi kêmî biçne nava leyîza hilbijartinekê ku ji aliyê Komara Îslamî ve, tenê ji bo xapandina xelkê tê lidarxistin.

Hewce ye em hinek bi hûrî balê bikişînine ser sedemên dilsarî û vêzariya xelkê ji şanoya hilbijartinan di Komara Îslamî de. Sîstem û pergala hikûmeta Komara Îslamî xwe di xwe de li ser bingeha du aliyên dijî hev hatiye avakirin û Qanûna Bingehîn jî nîşan û xuyakirina van du aliyane ye, Yekem **Komar** yan **Cimhuriyet** bi wateya sîstemekî demokratîk û avabûyî li ser bingeha deng û vîn û îradeya xelkê ye, Duyem, **Îslamî**, piştgirêdayî bi destûr û yasayên esmanî û neguher û bê hewce ji daxwaz, vîn û îradeya xelkê. Di sîstemeke han de ewa ku dikare vîna xelkê bide xuya kirin, (Serok Komar û Nûnerên Parlemanê û...) ye û aliyê din ku xwe bi parêzvanê yasa û qanûnên olî dizane, Welayeta Feqîh e ku hemû desthilatek di dest wî de ye, bê wê çendê ku di hember çi saziyekê de bersîvder bibe. Serok Komar jî ku di serve de serokê desthilata birêveberî û bijartiyê xelkê ye, bê desthilat û bersîvderê Weliyê Feqîh e. Bi wateyek din di wê rejîmê de, ne hilbijartin nirx û buhayek heye û ne jî kesê hilbijartî dikare erk û wezîfeyên nûnerbûna xwe birêve bibe.

Ceribîna desthilatdariyê di rejîma Komara Îslamî de eva selimandî ye ku hilbijartin nikarin bandorek wisan di demokratîzekirina welêt û qanûn û rêsayan de hebin. Xelkê zana û hişyar yê Îranê di hilbijartinên derbasbûyî de ew rastiyane bi başî ceribandine, lewra bi fêl, pîlan û piropagendeyên rejîmê naxapin û di hilbijartinan de beşdariyê nakin.

Piştî derbasbûn bi ser beşdariya xelkê di gerên berê yên hilbijartina Serok Komar de, bi hêvî û xweziya guhartinên bingehîn di nîzamê de û cîgirkirina demokrasiyê, niha xelk beşdariyê di bin ax kirin (veşartin)a gumana pejrandina guhartinan di rejîmê de dikin.

Yek ji astengên sereke yên ser rêya demokrasiyê di rejîma Komara Îslamî de, ferq û cudahîdananek e ku Yasaya Bingehîn afirandiye û nîva civakê, wate Jinan ji mafê xwe berbijarkirin bo posta Serok Komariyê bêpar dike. Ji aliyekê jin wekî nîva civakê li gor yasa û qanûnê ji mafeke demokratîk tê bêpar kirin û ji aliyeke din ve bi hêceteke dinê kêmaniyeke bihêz û mezin ya Sunnî Mezheb yên welat pareke berçav ji xelkê Kurd jî bi xwe ve digire ji bo Serok Komariyê têne bêpar kirin, ewa kêmaniyên olî yên din jî wekî Cihû, Mesîhî û Zerdeştî û heta parek ji kesên Şîe ol jî li xwe digire. Serbarê vana careke din parvekirina civatên xelkê bi **xweyî** , **ne xweyî** û retkirin û mandel kirina kêrhatîbûna berbijêrên ne xweyî ji aliyê Şêwra Pawanxwaz û desthilatdar ya Nobedar, bi ronî û zelalî naverok û kakila ne demokratîk ya hilbijartin di Îranê de derdixe holê.

Beşdarnebûna xelkê di hilbijartina gera duyem ya Şêwrên Bajar û Gundan û Meclîsa Heftem de rontirîn peyam bû ku ji karbidest û rayedarên rejîmê re hate dayîn ku serdema hêvî pêkirina xelkê bi sindoqên dengdanê di rejîma Komara Îslamî de xilas bûye û xala dawiyê di ser de hatiye danîn.

Heke gelên Îranê bi giştî ceribîna tal ya desthilatdariya 26 salan a Komara Îslamî derbas kirine, gelê Kurd wekî pêşengê xebat dijî dîktatorî û serberedayiyê, ew serbilindiye jî pê re hatiye bexşîn ku bi pişt girêdan bi xebata domdar û newestiyayî ji bo bidestveanîna mafên neteweyî û bidestxistina azadî, demokrasî û rêzgirtin ji mafê mirovan di hilbijartinên Serok Komariyê de hişyar û zanayane liv û hereket kiriye û peyama ron û zelal ya xwe şandiye û helwêsta jêhatî jî girtiye. Li mêj dem e ku gelê Kurd bi hûrî û berfirehî zulm û zordestiya rayedarên nîzamê û siyaseta Ferq û cudahîdanan û bi pile 2 danîna welatiyê Kurd di Îranê de seh pê kirî ye. Lewra careke din siyaset û polîtîkaya fêlbazane, kenîna derewîn û xapandina çi yek ji berbijarên Serok Komariyê û hewla bê encam ya çi deste û girûpekê bila di bin navê Guhartinxwezên Kurd jî be ku bixwezin ji asta bilind ya seha neteweyî ya Kurd mifaha xirab bistînin û naveroka daxwazên sereke yên Kurdan ewqas bîne jêr ku heta di çarçoveya tesk û berteng ya Qanûna Bingehîn ya siqet û ne demokratîk ya Komara Îslamî de cî bigire û tenê piştrast bi sozên piropagendeyî yên berî hilbijartina kesekê ku heke bihê hilbijartin jî, desthilata cî bi cî kirina wan nine, bibe bi vî awayî rewa û meşrûiyetê bi rejîma ne meşrû û neheq ya Komara Îslamî bidin, her ji niha ve tevî têkçûnê rû bi rû ye.

Guhartinên cîhanê bi giştî û Rojhilata Navîn bi taybetî û serhildana pêlên demokrasî û azadîxwaziyê ort û qada liv û hereketê ji rejîmên dîktator, serberedayî û kevneperest roj li pey rojê bertengtir kirî ye. Nîzam û pergala dîktatorî ya Îranê jî mehkûm bi neman û ji navçûnê ye û lidarxistina maşkanêya hilbijartinê nikare alîkariyê bi man û li ser pê sekinîna wê bike. Heke xelkê Îranê bi giştî û gelê Kurd bi taybetî li hember hilbijartina Şêwrên Bajar û Gundan û Meclîsa Heftem sar û sir bûn, vê carê peyama xwe bi neçûn bo ser sindoqên dengdanê ji bo hilbijartina Serok Komariyê dê bi guhê nebihîstî yê Welayeta Feqîh bigihîjînin.

Bi li berçav girtina wan fakterên ku me bas kirin, Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê hilbijartinên gera nehemîn ya Serok Komariyê baykot dike û daxwazê ji hevwelatiyên birêz bi giştî û nemaze xelkê xebatkar û kednexwarî yê Kurdistanê dike ku di wê hilbijartinê de beşdariyê nekin û bi vî awayî bo careke din peyameke ron û aşkira ji bo bîr û raya giştî ya cîhanê bihinêrin ku xelkê Kurdistanê ew nîzame di tevahiya xwe de ret kiriye.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**04.05.2005**
**14.02.1384**

**Daxuyaniya Deftera Siyasî ya PDK Îranê**

# Destpêbûna pêleke din ji girtin û zîndanîkirina xortên gelê Kurd

Di heyva çûyî de hejmareke berçav û xuya ji xortên gelê Kurd li Kurdistana Îranê bi sedema hebûna bîr û ramanên siyasî û azadîxwazane li deverên cur bi cur yên Kurdistanê ji aliyê hêzên leşkerî û dezgehên Îtilat (sîxor û casûsî) ya rejîmê ve hatine girtin û rapêçî heps û girtîgehan hatine kirin ku tu nûçeyek ji qeder û çarenivîsa wan di dest de nine û li ser hejmarek ji wan jî hukmên tund û zalimane hatiye sepandin. Bo mînak: Jıyan Kamkar, Wurya Kerîmî, Hîwa Nûrî, Weten Îbadî, Xalid Resûlî û Kawe Enwerî li bajarê Nodşê ku di 17'ê Xakelêweya 1384'ê Rojî (06.04.2005) hatine binçav kirin û heya niha jî cihê zîndanî kirin û ragirtina wan rohn û eşkere nebûye û tu nûçe û agahiyek derheq qedera wan di dest de nine.

Herwiha hejmarek ji xelkê Mehabadê ku berê bi guneha hebûna bîra siyasî ji aliyê rejîmê ve hatibûn destbiser û zîndanî kirin, hukmê hepsî kirina demdirêj bi ser wan de hatine sepandin. Ew girtiyane pêkhatine ji Reza Emînî ku hukmê 20 sal zîndan û dûrxistin bo girtîgeha Tewrêzê, Helmet Hesen Azerpûr ku hukmê 15 salan heps û dûrxistin bo girtîgeha Urmiyê, Ebdula Mihemedî, naskirî bi Ebdula Dostalî hukmê 15 salan û Xalid Mihemedzade ku hukmê 10 salan zîndanî û dûrxistin ji bo girtîgeha Meraxê bi ser de hatiye sepandin.

Çend rojek dibe ku wan girtiyane bo nerazîbûn dijî sepandina hukmê ne adîlane yên xwe dest bi gireva birçî bûnê girtine û daxwaz kirine ku pêdeçûnê bi wî hukmê ku bi awayekî ne adîlane bi ser wan de hatiye sepandin bikin.

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê tevî mehkûm û şermezar kirina girtin û hepsî kirina ew kome ji xortên gelê Kurd, daxwazê ji hemû kom û civatên navneteweyî û Rêxistinên alîgir yên mafên mirovan û azadîxwazên cîhanê dike ku bi merema rohn kirina çarenivîsa wan girtiyane û nerazîbûn ji sepandina hukmê ne adîlane bi ser çar girtiyên din, dengê rexne û nerazîbûna xwe bilind bikin û di vî warî de rejîma Komara Îslamî bixin bin zext û givaşê û rê pê nedin ku wisan bê tirs xortên gelê Kurd bi tawan û guneha bîr û ramana siyasî, bişîne girtîgehê û wan bi qedereke nediyar re rû bi rû bike.

Bi hêviya hewlên mirovhezane yên hemû aliyekê

**Deftera Siyasî ya PDK Îranê**
**25.02.1384**
**15.05.2005**

## Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê, kiryara terorîstî ya bajarê Hewlêrê pirotesto dike

Xelkê bişeref yê Kurdistanê!

Roja Çarşemî 14'ê Banemera 1384'ê Rojî, hemberî 04.05.2005'an, di kiryareke terorîstî li bajarê Hewlêrê de, nêzîk bi 50 kas hatine kuştin û bi dehan kes jî birîndar bûn.



Terorîst û reşbîran çavê dîtina ewlehî û geşekirina Kurdistanê ninin, bi wan kiryarên xwe dixwazin ber bi pêşketin û pêşdeçûn di wê herêmê de bigirin û şahî û keyfxweşiyê ji dilê xelkê bistînin, lê gelê Kurd nîşan daye ku ev cure bûyerane gavên wan ji bo meşandin rêya pêşketin û xebatê nasekinîne.

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê tevî şermezarkirina vê kiryara terorîstî, xwe di xem, kul û kovanên malbatên şehîd û birîndarên vê bûyera nexweş û gişt xelkê Hewlêrê hevbeş dizane û behî û sersaxiyê ji malbatên şehîdan dike û saxî û silametiya herçiqas zû ya birîndaran bi hêvî dixwaze.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**05.05.2005**

**Peyma pîrozbahiya hevalê hêja û xebatkar birêz Mistefa Hicrî**

## bo rêzdar Tonî Bilêr bi hinceta serkevtina Partiya Karker di hilbijartinên Îngilistanê de





**Serok Wezîrê xweştivî**!

Bi keyfxweşiyeke zor ve, ez gerimtirîn pîrozbahiyên xwe ji bona serkevtina dîrokî ya Partiya Karker bi serokatiya te bo gera sêyem, pêşkêşî te dikim.

Ez her wek berê daxwazkarê domkirina pêwendiyên qahîm yên di navbera her du Partiyan de di pêxema pêşdeçûna aştî û demokrasiyê di Îranê de me.

**Mistefa Hicrî**
**Sekreterê Giştî yê Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**07.05.2005**

# Beşdariya Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê di civîna Komîteya Rojhilata Navîn ya Enternasyonala Sosyalîst de

Roja 9'ê meha Maya 2005 (19.02.1384)'an, civîna Komîteya Rojhilata Navîn ya Enternasyonala Sosyalîst di yek ji holên Enistîtuya xwendinê ya welatên hevberjewend de li Londonê hate lidarxistin.

Di wê civînê de ji bilî Sekreterê Giştî yê Enternasyonala Sosyalîst, birêz Luyîs Ayala û rêzdar Turbîurn Yakland, berpirsiyarê Komîteya Rojhilata Navîn û Serok Wezîrê berê yê Norwejê, ev Partiyên jêrîn ku endamên Komîteya Rojhilata Navîn in, beşdarî kiribûn.

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê, Partiya Sosyal Demokrat ya Otrîşê, Partiya Sosyalîst ya Beljîka, Partiya Sosyalîst ya Firansa, Partiya Sosyal Demokrat ya Almaniya, Partiya Sosyalîst ya Yûnanistanê (PASOK), Partiya Karker ya Îsraîlê, Partiya Yaşad ya Îsraîlê, Partiya Demokratên Çep ya Îtaliya, Partiya Karker ya Holanda, Partiya Kar ya Norwejê, Rêxistina El Feth ya Filistînê, Partiya Sosyal Demokrat ya Swêdê, Komeleya Demokrat ya Tûnisê, Partiya Sosyalîst ya Ewropayiyan, Yekîtiya Navneteweyî ya Ciwanên Sosyalîst, Enternasyonala Sosyalîst ya Jinan.

Armanca pêkanîna vê civînê bas li ser rewşa Rojhilata Navîn û darêtina bernameyekê di bin navê **aştî û demokrasî di Rojhilata Navîn de ji dîtingeha Enternasyonala Sosyalîst ve** bû. Qirar e ku ev biryarnameya ji bo pesendkirinê bi civîna Şêwra Enternasyonala Sosyalîst re ku di dawiya meha May ya 2005'an de li Tel Avîv û Ramulahê pêk tê, bihête pêşniyar kirin.

Civîn demjimêr 10'ê sibê ji aliyê Luyîs Ayala û Turbîurn Yakland ve dest pê kir. Wan tevî bi xêrhatin kirin û xuya kirina keyfxweşiyê ji beşdariya nûnerên partiyên beşdar di civînê de, li ser girîngiya mijara civînê tekez kirin û pêkanîna civîna pêşîn ya Şêwra E S Li bajarên Tel Avîv û Ramulahê her ji ber wê



sebebê girîng hesibandin.

Paşan nûnerên du Partiyên Karker û Yaşad ya Îsraîlê derheq bi destpêkirina pirosêsa aştiyê ya di navbera Îsraîl û Filistînê de û Xarîteya Rê axavtinên xwe pêşkêş kirin. Ewan tevî îşare kirin bi kosp û astengên ser rêya vê dozê, li ser vê çendê tekez kirin ku bi rêvebirina kemilî ya Xarîteya Rê, em dikarin pêşketinan bidestve bînin û di encam de pirsgirêk bi awayekî adîlane bihêne çareser kirin.

Di dawiyê de wan spasiya xwe ji Enternasyonala Sosyalîst re ji bona hilbijartina Tel Avîv û Ramulahê bo civîna pêşerojê ya şêwrê û terxan kirina para bingehîn ya basan li ser Rojhilata Navîn xuya kirin û hêvî xwestin ku E S rolekî bibandortir û çelengtir di arîşe û pirsgirêkên Rojhilata Navîn bi stû bigre.

Piştre nore gihîşte nûnerên Rêxistina El Fethê. Wan tevî xuya kirina keyfxweşiyê ji bona destpêkirina pirosêsa aştiyê û navbirin û qala pirsgirêkên jorîn, (wekî ew dîwarê ku dewleta Îsraîlê çê kirî ye, pirsa bajarokên Îsraîliyan di nava axa Filistînê de, pirsa girtiyên Filistînî li Îsraîlê û ...) li ser wê çendê tekez kirin ku birêvebirina kemilî ya Xarîteya Rê û soz û ehd di berbipêşdebirina qonaxên wan de di çareser kirina pirsgirêkên navbera her du aliyan de dê nirx û buhayeke zaf hebe û di cîgirkirina aştiyeke hertimî de jî dê rolekî bibandor hebe. Herwiha wan li ser wê çendê tekez kirin ku divêt E S di vê derheqê de rolekî çelengtir bigre stûyê xwe.

Paşan nûnerê Komeleya Demokratîk ya Tûnisê axavtina xwe pêşkêş kir ku pitir di pesendkirin û piştgîrî ji axavtinên nûnerên Rêxistina El Fethê de bû.

Piştre keret gihîşte nûnerê Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê. Ji aliyê PDK Îranê ve hevalê hêja Kekê Xusro Ebdulayî endamê deftera têkiliyên navneteweyî yê partiyê axavtineke girîng û dewlemend pêşkêş kir. Deqa wê axavtinê di vê hejmara Agirî de ketiye ber çavê we xwendevanên hêja û qedirgiran.

Paşan nûnerên partiyên Ewropayê dîtin û nêrînên xwe derheq bi pirsgirêk û giriftên wekî, pirsa Îraqê, pirsa vegeriyana hêzên Sûriyê ji Lubnanê, çekên Etomî yên Îranê, Terorîzm, doza Kurd li Îranê, Turkiyê û Sûriyê, doza mafê jinan û kêmaniyên neteweyî û ayînî dan xuya kirin. Para dawiyê ya karê civînê taybet bû bi bas û gotûbêj derbarê wê biryarnameya ku ji aliyê berpirsiyarên komîteyê ve di bin navê **aştî û demokrasî di Rojhilata Navîn de** hatibû darêtin.

Paş bas û guhertina bîr û rayan li ser deqa vê pêşniyarbiryarê û li hevkirina beşdarên civînê ji bo çend guhertinek ku tê de pêk hatin, biryar hate sandin ku piştî pesendkirina wê di civîna pêşîn ya Şêwra E S de, wekî biryarnameya vê Rêxistinê bihête belav kirin.

Hêjayî gotinê ye ku şanda PDK Îranê di vê civînê de ji hevalan: Kekê Xusro Ebdulayî, Kekê Mihemed Elyar û Kekê Mewlûd Siware pêk hatibû.

# Deqa axavtina hevalê xebatkar, Xusro Ebdulayî di civîna Komîteya Rojhilata Navîn ya Enternasyonala Sosyalîst li Londonê de – 9'ê Maya 2005'an




**Cenabê serok!**
**Hevalên rêzdar!**

Bas kirin li ser tekûzkirin û cihgirkirina aştiyê di Rojhilata Navîn de xwediyê dîrokekî dirêj e. Lê dîrok û ceribandinan bi me dayîne eyanê ku bêy cihgirkirina demokrasiyê û rêzgirtin ji mafên mirovan, bas ji cihgirkirina aştiyê di herêmê û tevahiya cîhanê de xewnekî bê kakil e. Xebat di pêxema mikûmkirin û cihgîrkirina aştiyeke hertimî di herêmê de, tenê ji rêya hewildan bo rêzgirtin ji mafên mirovan û cîgirkirina demokrasiyê tê cî bi cî kirin. Bi wateyekî din xebat di pêxema aştî û cihgirkirinê de, nikare ji xebat bo rêvebirina mafên mirovan û cigirkirina demokrasiyê bihête cuda kirin. Xebat di rêya cihgikirina aştiyê de, tenê eva nine ku di hewla pêşîgirtin ji pêkhatina rewş û zirûfa şer de bin, ji ber ku qetandina reh û rîşala çavkanî û hegerên alozî û şer jî hewce ne û herwiha divêt xebat dijî rejîmên dîktator bihête kirin ku ji rêya zevtkirina desthilatê ve sîstemên tepeserkar bi ser xelkê de sepandine û rê ji hilbijartina azad ya xelkê digirin û wan ji azadiya hilbijartina nûnerên wan bo bidestvegirtina qedera xwe bêpar dikin. Di rastî de asteng û kospa sereke ya cihgirkirina aştî û geşekirina siyasî, civakî, aborî û çandî di herêm û welatên pêwendîdar de, ev rejîmane ne.

Di Îranê de mixabin em tevî rejîmekî wisan berengar in. Rejîmek ku 26 salên tewaw bi terzekî hovane neteweyên welatê me serkût dike. Zîndanî kirin, îşkence, terror kirin, bê ser û şûn kirin, kevirbaran kirin, birîna endamên laş, darvekirin di pêş çavê xelkê de, geşekirina genîtiyê di dezgehên dewletî de, hejarî, bê par kirina gelên çewisandî yên Îranê mîna: Kurd, Azerî, Belûç, Turkman û Ereb ji mafên mirovî û neteweyî yên wan, parek e ji karnameya reş ya Komara Îslamî di van 26 salên derbasbûyî de.
Di Kurdistana Îranê de perçiqandin û serkûtkirin gihîştiye hedê xwe yê dawiyê. Di vê herêma Îranê de em tevî serkûta eşkere û ne mirovane ya rejîmê re rû bi rû ne. her terze daxwaz û nerazîbûna gelê Kurd, heta di terzên aştîxwazane de jî bi xwînrêtinê tên bersîv dan.

**Hevalên birêz!**
Hin kes wisan didin xuya kirin ku bi guhartina kesan, Îran dê ber bi reform û guhartinan ve biçe û heta îdiaya demokrasî, civaka medenî û hikûmeta yasa û qanûnê dikin, bê xeber ji vê çendê ku di Îranê de em tevî sîstemekê berengar in ku tê de kesek bi navê "Rehber" (serok) bi avakirina dezgeh û organên destnîşankirî, tevahiya alî û hêzên desthilatê xistiye bin pawan û rikêfa xwe. Di Îranê de Serok Komar û Parleman, ji şanogeriyê zêdetir çi tiştek ninin û her lewra çi desthilatek çininin. Her bi vê boneyê ve jî kesên mîna Xatemî heta hekî em wisan danên ku meremekî baş jî hebin, gavekê ber bi pêşve bavêjin, ku me dît nekarîn karekî wisan bikin.

Ez derheq rola rejîmê di cihgirnebûna ewlehî û tenahiyê di Îraqê de, dijberî kirin tevî birêveçûna aştiyê di navbera Îsraîl û Filistînê de, piştevanî ji terorîzma navneteweyî û piştevanî ji girûpên terorîstî, çi tiştekê nabêjim, ji ber ku eva tiştekî rohn û eşkere ye û hewcehî bi bas û berhevdanê naket. Niha pirsyarek ku di rojevê de ye, eva ye ku bi hebûna van rejîmên hankî û baldan bi vê çendê ku di vê rejîmê de 35 hetanî 40 milyon kesî bi navê Kurd ku ji hemû mafekî neteweyî û mirovî yên xwe hatiye bêpar kirin, çawa dikaribe bas ji aştî û tenahiyê bihête kirin. Lêbelê pişkek ji neteweya Kurd di Îraqê de bi avakirina sîstemeke demokratîk ya federal bi vê hêviyê gihîştine ku dê mafên berheq yên xwe bi destve bînin. Lê 10 milyon Kurd li Îranê û Kurdên din jî herwiha ji mafên herî sereke yên xwe bêpar in.

Îran bi hebûna nêzîk bi 70 milyon nifûs û hilkevteke girîng ya stiratêjîk di hermê de, welatek e ku di warê pêkhata nifûsê ve 6 netewe tê de dijîn ku her yek ji wan li derveyî tixûbên Îranê ve xwediyê dîrok, çand û etnîka xwe hene, heke di Îranê de sîstemeke demokratîk bihête avakirin, dikare rolekî berbiçav û qedersaz di pêxema cihgîrkirina aştî û demokrasiyê di herêmê de bilîze.

Gelên Îranê bo bidestveanîna sîstemeke wisan xebateke dijawr û di hemen demê de qehremanane birêve dibin û em di vê bawerê de ne ku ev xebate direng yan zû dê bigihîje encamê û welatê me jî dê bi dîtina azadî, aştî û demokrasiyê şa be.

**Gelî hevalan!**
Di vê rewş û zirûfa xebatê de, dema vê hindê ye ku Enternasyonala Sosyalîst wekî rêxistineke mezin ya cîhanî û alîgirê azadî û demokrasiyê, bo piştevanî ji xebata xelkê Îranê pê biçeqîne û vê kiryarê di biryarnameya xwe ya derheq Rojhilata Navîn de dide xuya kirin.

# Ceribî re ceribandin şaş e

**Selîm Zencîrî (rondik24@yahoo.com)**

Yek ji mijarên girîng di rojeva Îranê de ku raya cîhanê bo aliyê xwe rakêşa ye, hilbijartina Serkomariyê ye ku biryar e di 27'ê Cozerdanê de birêve biçe. Ev hilbijartine him bo Komara Îslamî bi merema rewatî û meşrûiyet dana xelkê bi rejîmê û him jî bo xelkê bi merema pûç kirina vê ramana rejîmê girîngiyekî taybet heye. Hilbijartinek ku tê de hemû bihayên demokartîk têne pêpes kirin û takên civakê bi tu terzekê xwedî biryar bo diyarî kirina qeder û çarenivîsa xwe ninin.

Ev hilbijartine di rewşekê de birêve diçe ku Komara Îslamî berengarê zext, givaş û kirîzên hundirî û derveyî di warên siyasî, civakî û aborî de bûye. Di hundirê welat de pitir ji hemû gavekê kakila rejîmê bo xelkê eyan bûye û berevajî vê çendê jî rejîm ji hemû gavekê zaftir givaşê bo xelkê bi taybet texa rewşenbîran tîne. Di astê derveyî de, piştevanîkirin ji terorîzmê, binpêkirina mafê mirovan û xebat ji bo bidestxistina çekên Etomî bûne




sedama guherîna nêrîna wan bi nîsbet rejîmê û dûrketin û zextanîna roj bi roj zêdetir a wan li ser rejîmê.

Bo xelkê Îranê û bi taybet gelê kurd eyan bûye ku di çarçoveya Komara Îslamî û yasaya bingehîn ya vê rejîmê de demokrasî, mafê mirov, azadî û..., bi terz û metodên cur be cur ve têne binpê kirin, ji ber ku yasaya Komara Îslamî li ser bingeha Wilayeta Feqîh hatiye ava kirin û hemû netewe û Olên din ji bilî şîên 12 îmamî bi çaveke sivik û welatiyên pile 2 û jêrtir têne mêze kirin. Betal kirina kêrhatiya zêdetir ji 1000' berbijarên Serkomariyê ji aliyê bêjînga Şêwra Nobedar di vê gerê de û pejirandina kêrahatiya 8' ji wan eyanker û mînaka zîndî a vê rastiyê ye.

Kurd jî wek yek ji kêmaniyên neteweyî di Îranê de bi salan e ku di bin sîbera biyom û reş ya Melayan de dijît û her gav bas ji maf û daxwazkarê mafê xwe bûne bi tundtirîn awayan hatine tepeser kirin, mohra cudabûnê li ser eniya wan dane, bi dijminê yekîtiya xaka Îranê û bi alîgir û amilê biyaniyan gunehbar kirine. Çimkî di felsefeya Komara Îslamî de daxwazkirina maf û azadiyên neteweyî nemaze ji bo gelê Kurd û dijbûn tevî yekîtiya axa Îranê yek mana heye.

Li vê navberê û di vê rewş û qonaxa hesas û dijwar de girûpeke biçûk bi nav Reformxwazên Kurd ku berjewenîxwaz û parêzerên Komara Îslamî ne, xwe bi parêzer û nûnerên gelê Kurd dayne nas kirin û bas ji Reform û guhertinan di çarçoveya yasaya Komara Îslamî de dikin, herwiha bi berhev kirina daxwaznameyakî 15 madeyî, 3 milyon dengê Kurdan girêdayî bi cî bi cî kirina vê geleleyê ji aliyê berbijaran kirine.

Gelo kê ew kirine nûnerê gelê Kurd? Gelo ewan rabihoriyeke hinde paqij derheq bi Kurd û pirsa Kurd di Îranê de hene? Ew hertim di eniya dijî van maf û daxwazên rewa yên kurdan de bûne, ger derbasbûyeke baş jî hebin, vê carê ketine telika pîlanekê ku alîkariyê bi siyasetên Komara Îslamî bi dijî tevgera rizgarîxwaz ya Kurd dike.

Bi nav Reformxwaz bas ji Reforman dikin. Başe reformên cihê basa wan çi ne? Di kîjan qonax ji temenê Komara Îslamî de ronahî û riftareke demokratîk tê xuya kirin? Refrandoma Nedemokratîk ya Komara Îslamî di sala 1358'an? Yan berivdan bi daxwazên neteweyî û demokratîk piştî serkevtina şoreşa gelên Îranêdi sala 1357'an de? Yan fermana cîhada Xumênî ji bo kuştin û qir kirina xelkê Kurdistanê? Yan domandina 8 sal şer di gel Îraqê? Yan Îdama bi kom a Lawên Kurd? Yan terora Rewşenbîr, siyasetvan û azadîxwazên Îranêdi hundir û derveyî Welat de? Yan piştewanî ji terorîzmê û hwd...? kîjan? Ev qewl û sozane sala 1376'an jî bi gelên Îranê dan, lê di yekem gava girtine dest a desthilatê, hemû tiştek ji bîr kirin û rêyek li pêşiya xwe girtin ku Wilayeta Feqîh diyarî dikir û encama wê jî, tenê dirêjkirina jiyê Komara Îslamî û domandina zulm û zora zortir bû.

Paşan geleleya 15 madeyî ya wan, xwast û daxwazên bingehîn û siyasî yên Kurdan ninin, tenê pareke kêm ji mafên çandî, olî û aborî tê de têne xuya kirin, lewre ev karê wan bizavek e ji bo berteng û biçok kirina xwestekên siyasî û bingehîn yên Kurdan ku di Îranekî Demokratîk û

Federalî de xwe derdixin. Pirsa Kurd, pirseke siyasî ye, pirsa misogerbûna demokrasiyê ye, pirsa maf û azadiyên demokratîk e, pirsa me daxwaza post û ... nine. Ger merema Kurdan posta wezîrî û parêzgarî be! Xwe Remezanzade, berdevk û serokê binav **Reformxwazên Kurd**, Parêzgarê Sine bû û bûyera 3'ê Reşemeya 1377'an li serdemê parêzgariya wî de qewimî. Ew xwenîşandana aram ya xelkê kirne qada girtin, kuştinê û tenê xizmeta navhatî, dirêj kirina tiliya tawanbariyê bo aliyê Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê bû. Başe Remezanzade ku bi hisab berevaniyê ji mafê Kurdan dike, çima napirse ku girtîgehên rejîmê tejî ji girtiyên siyasî û alîgirên Opozîsyûna Kurd in? Çima napirse ku roj nine çend Kurd nekevine ber destrêjiya guleyên celadên rejîmê û girtin û îdama wan, herwek berê dom dike?

Bi xweşî ve gelê Kurd rejîmê û hinek ji kirêgirtiyên bi nav **Reformxwazên Kurd** baş nas dikin û xwazyarê azadî, mafên neteweyî, wehevî û alîgirên tevgera rizgarîxwaz ya neteweya xwe ne. Mahiyet û kakila Rejîmê bo gelê Kurd bi giştî û nemaze xwendekar, rewşenbîr, ciwan û jinan û ... eyan bûye û hilbijartin û taktîka vê carê jî dê baykot bikin, ji ber ku dizanin hemû cehd û bizav û dirûşmên wan jêsteka siyasî a serûbendê hilbijartinê ye û tenê ji ber bidestxistina kursiya desthilat û dest gihîştin bi dahat û çavkaniyên aborî yên welat in, nek ji ber misogerkirin û cihgîr kirina xwast û daxwazên xelkê.

Bila bi nav **Reformxwazên Kurd** jî hay ji xwe hebin ku nûnerên gelê Kurd, Partî û Rêxistinên siyasî yên Kurd in ku ew, bi dijî şoreş û cudahîxwaz nav dibin. Bila bizanin ku yekîtiya xaka Îranê bi zor û tepeseriyê çê nabe, wekhevî û yeksaniya gelên Îranê bê ferq û cudahî di hemû waran de, tenê di çarçoveya sîstemekî Demokratîk û Federalî de misoger dibe.

# Enternasyonala Sosyîalîst û PDK Îranê

**Şehab Xalidî** (**beşa 2 û dawî**)

Di beşa yekem ya vê gotarê de me bi kurtî qala dîroka Enternasyonala yekem, duyem û sêyem kir. Di vê beşê de jî em dê basa pêkhateya îroyîn ya vê Rêxistina navneteweyî û endambûna PDK Îranê, wekî yekemîn hêz û Partiya Kurdî û Îranî bikin.

Dîroka Enternasyonala Sosyalîst û pêkhateya evroyî ya vê saziyê vedigere bo sala 1951'an. Di vê salê de nêzîk 20 Partiyên Sosyalîst, Sosyal Demokrat û Partiyên Kedker yên Ewropayê di Kongireyekê de li bajarê Firankfortê avabûna Enternasyonala Sosyalîst ragehandin. Di salên destpêkê de tekoşîna Enternasyonala Sosyalîst zêdetir di çarçoveya welatên Ewropayê de bû, lê piştre cihên din yên cîhanê jî dagirt. Di rastî de pirensîpên bingehîn yên Enternasyonala Sosyalît yanî Sosyalîzma Demokratîk û rakirina Dîktatoriya Piroltariya encama Kongireya



Firankfortê ne.

Lê derbasbûyiya dostanî û nêzîkatiya PDK Îranê û Enternasyonala Sosyalîst vedigere bo sala 1986'an. Di wê salê de Sekreterê Giştî yê PDK Îranê Dr. Qasimloyê nemir li ser pêşniyara hejmarek ji rêberên Partiyên Sosyalîst yên Ewropayê wekî Birunu Kirayiskî, Ulaf Palme, Liyunel Juspen û Piyer Murwa û li ser gaziya Enternasyonala Sosyalîst di Kongireya Enternasyonalê de ku di meha Juena 1986'an de li bajarê Lîma, paytexta Piroyê pêk hat, beşdar bû. Ji wê demê pêde PDK Îranê li hemû Kongireyên Enternasyonalê û di zaf civînên Şêwra Enternasyonala Sosyalîst de beşdar bûye. Ji sala 1986'an pêde heya niha kêm caran hebûye ku Enternasyonala Sosyalîst di Kongire û civînên xwe de buhagiraniyê nede pirsa Kurd û di belgenameyên xwe de piştevaniyê ji daxwazên rewa yên gelê Kurd di sernserê Îranê de neket. Her wekî di peyama birêz Ebdula Hesenzade, Serkreterê wê demê yê PDK Îranê bo civîna Şêwra Enternasyonala Sosyalîst di Birukselê 07-08.12.1995'an de hatibû: Dara pêwendiya dostane ya PDK Îranê û Enternasyonala Sosyalîst bi xwîna du rêberên kêrhatî yên PDK Îranê hatiye av dan. Çimku herdu rêber piştî beşdarî li Kongireyên Enternasyonala Sosyalîst (Dr. Qasimlo mehekê piştî beşdariya di Hejdehemîn Kongireya Enternasyonalê de û Dr. Şerefkendî tenê çend demjimêran piştî bi dawî hatina Kongireya Nozdan ya Enternasyonalê) de ji aliyê terorîstên Komara Îslamî ve hatine şehîd kirin.

Di encama pêdagirtina PDK Îranê bona endametiya di vê saziyê de û hebûna şert û mercên hewce û bi piştevaniya gelek ji Partiyên Sosyalîst û Sosyal Demokrat, ku PDK Îranê hêjayî endametiya di Enternasyonala Sosyalîst de dizanîn, endametiya PDK Îranê ji aliyê hinek organên hewce yên Enternasyonalê ve kete ber bas û piştî qebûlkirinê, bona biryardana yekcarî li ser vê pirsê, ev pirsa birine Kongireya Bîstem ya vê saziyê de, ku bi xweşî ve ev biryara hate pejirandin û PDK Îranê di Kongireya Bîstem ya saziya Enternasyonala Sosyalîst 09-11.09.1996'an de tevî 339 Partî û rêxistinên dinê bû endamê malbata mezin ya Enternasyonala Sosyalîst. Hetanî sala 1996'an nêzîkî 142 Partiyên Sosyalîst, Sosyal Demokrat û Kedkarî, û herwiha gelek Partî û rêxistinên demokrat ji her pênc Qareyên cîhanê bibûne endamê vê saziya Cîhanî. Gelek ji Partiyên endamê Enternasyonala Sosyalîst di welatên xwe de xwedî desthilat in. Vê saziyê wekî saziyek xwedî nifûz û xwedî hitbar, bi Rêxistina Neteweyên Yekbûyî û organên dinê yên navneteweyî re hevkariyeke nêzîk heye û hevşêwrî tevî tê kirin.

Wergirtina PDK Îranê bi endametiya Enternasyonala Sosyalîst bo PDK Îranê, bo gelê Kurd û bo xelkê welatê me Îranê serkevtineke gelek mezin bû.

**Çavkanî:**
**Rojnameya Kurdistan, Organa Komîteya Navendî ya PDK Îranê, hejmarên 237 û 238**

# Rapora lidarxistina civîna Şêwra Enternasyonala Sosyalîst di rojên 23-24'ê meha May ya 2005'an li bajarên Tel Avîv(Îsraîl) û Ramula(Filistîn)

Di rojên 23 û 24.05.2005'an de li bajarên Tel Avîv û Ramulayê, civîna Enternasyonala Sosyalîst hete li darxistin, pirsa here sereke ku di civînê de hate nîqaş kirin, pirsa **aştî û demokrasiya siyasî û aborî di Rojhilata Navîn de li dîtingeha Enternasyonala Sosyalîst** bû.

Her li ser vê pirsê ji bilî Karbidestên Îsraîlî û Filistînî, hejmarek ji berpirsiyarên sereke yên Rêxistina El Fethê û Partiya Karker ya Îsraîlê û herwiha hejmarek ji berpirsiyarên Partiyên Sosyalîst yên Ewropayê li ser mijara vê civînê dan û standin. Bo mînak ji wan pişikdaran: Antoniya Gotrîs, Serokê Enternasyonala Sosyalîst û Serok Wezîrê berê yê Portugalê, Torbîurn Yagland, berpirsiyarê Komîteya Rojhilata Navîn ya Enternasyonala Sosyalîst û Serok Wezîrê pêşîn yê welatê Norwejê, Manoîl Şaws, Serokê Partiya Sosyalîst ya Îspanya, Pîro Fasîno, Serokê Partiya Demokratên Çep ya Îtalya û rêveberê Komîteya Enternasyonala Sosyalîst bo aştî û demokrasî û mafê mirovan, Xatûna Piyalo Katêlî, Seroka Enternasyonala Jinan, Masîmo Dalêma ji rêberên Partiya Demokratên Çep ya Îtalya û Serok Wezîrê berê yê wî welatî, Fîlîp Gunzalis ji rêberên Partiya Sosyalîst ya Îspanya û Serok Wezîrê berê yê wî welatî, Corc Papandreo, Serokê Partiya Sosyalîst ya Yûnanistanê û Wezîrê Derve yê wî welatî.

Di roja 24.05.2005'an de komîteyê yekem civîna xwe bi bas û nîqaşkirin seba danezana ku Komîteya Rojhilata Navîn ya Enternasyonala Sosyalîst ku ji bo vê civînê berhev kiribû, dan û standin kirin. Ev biyarnameya han piştî bas û gengeşeyên pêwîst bi dengê piraniya pişikdaran hate erê kirin. Di dawiya vê civînê de pirsa bilindkirina pileya endametiya hin partî û rêxistinan hate rojevê ku partiya me yek ji wan partiyan bû.

Bi xweşî ve yek ji wan partiyên ku pileya endametiya wan bilindtir bû, PDK Îranê bû. Yek ji wan partiyên din ku pileya wan berztir bû, Yekîtiya Niştimanî ya Kurdistanê bû ku vir pê de endamek e ku gişt mafek di Enternasyonala Sosyalîst de heye.

Hêjayî gotinê ye ku rêzdar Xusro Ebdulayî endamê bîroya peywendiyên navneteweyî yê partiyê li derveyî welat, wekî nûnerê partiyê di vê civînê de beşdar bû.

Rêzdar Xusro Ebdulayî di navbera civînan de, hevdîtinên dubare û taybet tevî berpirsiyarên Enternasyonala Sosyalîst û nemaze rêzdar Antoniyo Gotrîs, Serokê Enternasyonala Sosyalîst, Loyîs Ayala Sekreterê Enternasyonala Sosyalîst, Torbîurn Yagland, berpirsiyarê Komîteya Rojhilata Navîn ya Enternasyonala Sosyalîst, Konî Firîdrîkson, berpirsyarê Girûpa Kar ya Enternasyonala Sosyalîst ya Jinan û herwiha tevî Şandên nûner yên Partiyên pişikdar di civînê de wekî: Şanda nûneratiya Partiya Sosyal Demokrat ya Almanya, Partiya Sosyalîst ya Firansa, Partiya Sosyalîst ya Beljîka, Partiya Sosyalîst ya Yûnanistanê, Partiya Karker ya Îsraîlê, Partiya Demokratên Çep ya Îtalya, Partiya Karker ya Holanda, Kongireya Neteweyî ya Afrîqaya Başûr, Partiya Sosyal Demokrat ya Siwîsrayê û Rêxistina El Fethê hevdîtin pêk anîn.

Di wan hevdîtinan de rêzdar Xusro Ebdulayî, para berçav ya gotin û şiroveyên xwe xistibûn derheq rerwşa Îranê û avabûna **Kongireya Neteweyên Îrana Federal** û armancên vê kongireyê û herwiha daxuyaniyên Kongireyê bi zimanê Îngilîzî û Firansî, raberî şandên nûner kir.

# Rapora civîna meha Avrîlê ya Kongireya Neteweyên Îrana Federal li bajarê Londonê

Desteya birêveber ya Kngireya Neteweyên Îrana Federal di roja 23'ê Avrîla 2005'an de civîna xwe ya li Londonê pêk anî û ev biryarên jêrîn pesend kir:

1. Di destpêkê de Kongireyê nirxandinek li dor pirsa Erebên herêma Ehwazê kir û piştevaniya bê lêre û wêde ya xwe ji tevgera neteweya Ereb dijî siyasetên Komara Îslamî derheq asîmîlasiyona neteweyî ya herêma Ehwazê û ji holê rakirina nasnameya neteweyî ya wan da xuya kirin.
2. Kongirê piştî bas û gengeşe li ser pêşnivîsa destûrnameyê, ew pejrandkir û biryar hate dayîn ku li vir pêde ew bibe bingeha kar kirinê ji bo pêşdebirina bernameyên xwe.
3. Berdevk û cihgirê Kongirên hatne hilbijartin
4. Cihê demî yê Sekretariya Kongirê hate diyarî kirin.
5. kongireyê biryar da ku malperek înternêtî taybet bi xwe ava bike û ji bo birêxistina dezgehên din yên ragihandinê gavan bavêje.
6. Herwiha Kongireyê nirxandineke destpêkî ji bûdce û hezîneyên xwe yên pêşîn kir.
7. Piştî bas û gengeşe kirin li ser pirsa endamên nû, endambûna 3 kesan ret kir û endambûna 2 yên din bi nirxandina pitir û komkirina zaniyariyên pêtir, û du berbijên endambûnê jî bi dengê giştî û bi kom yê endaman hatine wergirtin ku pêk hatibûn ji:

**1. Eniya Neteweyî ya Azerbaycanê**
**2. Navenda Çandî ya Azerbaycanê**

Kongireya Neteweyên Îrana Federal
27'ê Avrîla 2005'an

**1. Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**2. Eniya Yekbûyî ya Belûçistana Îranê**
**3. Tevgera Federal Demokrat ya Azerbaycanê**
**4. Partiya Xelkê Belûçistana Îranê**
**5. Partiya Hevpêwendiya Demokratîk ya Ehwazê**
**6. Rêxistina Şoreşvan ya Zehmetkeşên Kurdistanê –Komele**
**7. Rêxistina Berevanî ji Mafên Nateweyî yên Gelê Turkiman**

# Biryarnameya Civîna Enternasyonala Sosyalîst derheq Rojhilata Navîn, pesend kirî ya 23 û 24'ê meha Maya 2005'an li Tel Avîv û Ramulayê

***Bi baldan bi wê giraniya ku Enternasyonala Sosyalîst di asta cîhanê de heye, nemaze eva ku xwediyê statûya rawêj û şêwirdarbûnê di Rêxistina Neteweyên Yekbûyî de ye û herwiha Partiyên Ewropayê yên endamê wê yan parek ji wan di welatên xwe de desthilatdar in yan di astê Partiyên sereke yên welatên xwe de ne ku egera vê çendê ku di pêşerojê de desthilatê bidestve bigirin zor e, divêt ev biryarnameya her çend ku ne xwediyê hêza birêveberiyê ye, girîngiya siyasî û menewî ya zaf pê bihê dayîn. Ji ber girîngiya vê biryarnameyê, em deqa giştî ya wê werdigerînin û pêşkêşî we dikin.***

**Babeta biryarnameyê:**

## Demokrasî û Aştî di Rojhilata Navîn de

* Guhartinên vê dawiyê ku bûne sebebê hêviyên dubare, ji ber vê çendê ku gelên deverê dikarin pêşerojeke demokratîk û aştîxwazane pêk bînin, him sebebê dilgermî û him jî keyfxwaşiya Enternasyonala Sosyalîst e ku demeke dûr û dirêj e di hemû wan hewil û xebatên ku ji bo cîgirkirina aştiyeke berdewam di Rojhilata Navîn de tên dayîn, rasterast beşdar bûye. Lewra Enternasyonala Sosyalîst ji wan hwlên ku ji bo cîgirkirina aştiyê û bidestveanîn û parastina mafên mirovan têne dayîn, piştgîriyeke micid dike û di vê derheqê de jî bi hewlên xwe yên berdewam di pêkanîna delîveyên jêhatî ji bo hemû welatiyan di warên aborî û herwiha bihêzkirina hikûmetên demokratîk li ser bingeha nirx û buhayên Sosyal Demokrasiyê dê bidomîne.

* Çaxê vê çendê hatiye ku ji bo Rojhilata Navîn li ser bingeha aştî, demokrasiyê pêşdîtinên nû bihên vekirin û ev kare baştirîn alav bo ji nav birina terorîzmê ye. Divêt civaka navneteweyî li dijî her cure kiryareke terorîstî û mifah sitandin ji tund û tûjî dijî gelên sivîl û bê guneh û herwiha dagîrkirin û sitemekê bi awayekî hevgirtî kar bike û di vî warî de kifş û aşkira helwesta xwe bide xuya kirin.

* Enternasyonala Sosyalîst ji hemû wan hêzên ku di heremê de ji bo demokrasiyê û rêzgirtin ji mafên mirovan û ji nav birina dagîrkeriyê hewlê didin û xebatê dimeşînin, piştevaniyê dike û tev Partiyên endam û herwiha civaka navneteweyî ji bo piştgîrîkirin ji tevgerên demokratîk û herwiha ev hewlên ku di herêmê de û di pêvajoya reformên demokratîk di pêxema civakên medenî yên vekirî dimeşin, gazî dike.
Di vê herêmê de piştevanî ji kêmaniyên neteweyî û çêtirbûna garantî ya mafên jinan girîngiyeke taybetî û bilind heye. Herwiha Enternasyonala Sosyalîst welatên deverê bo ji holê rakirina sizayê îdamê hay dide.

* Ew haydan û xebatên baş ku di pêvajoya cîgirkirina aştiyê di vê hermê de têne holê, divêt aliyê kiryarê bi xwe ve bigirin. Lewra, em hemû herêmên cîhanê ji bo zêdekirina hevkariyê bi herêma Rojhilata Navîn re gazî dikin û ji ber vê çendê ku em dibînin yekemîn rûniştina serokên hin welatan ji Amerîkaya Latîn bi hin welatan ji herêma Rojhilata Navîn re pêk hatiye, em şadî û keyfxweşiya xwe didin xuya kirin.

* Bi berçavgirtina ew delîve û fersendên ku piştî paşdekişan ji Kerta Xezê û ji parên din yên Bakura rûbarê Urdinê de derketine holê, hewce ye ku Yekîtiya Ewropayê roleke taybetî bilîze. Li dû berfirehbûna Yekîtiya Ewropayê, em pirojektên piratîkî yên du alî derheq Lubnanê û Filistînê dibînin. Divêt ev pirojekt bihêne bihêz û xurt kirin û li ser bingeha pirosêsa Barselona(Spanya)yê di sala 1995'an de, ji bo baştirkirin alîkariyên herêmî de mifah ji wan bihê standin. Em li ser wê baweriyê ne ku bi pêşdebirina hevkariyên herêmî, di demeke dirêj de dê aştî û pêşkevtinê di herêmê de desteber dike. Di pêşerojê de alîkarî divêt ji rêya vekirina tixûb û bazaran berevrûyê bazirganiyê û sermaye û kar çêtir bihête kirin.

* Welatên herêmê divêt bi piştevaniya welatên Ewropayê û Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê di fikra pêkanîna peymanekê di warê Ewlekarî û alîkarî li gorî modela Rêxistina OSCE (Rêxistina Tenahî û Alîkariya Ewropayê) di navbera xwe de bibin. Ji rêya avakirina Rêxistina Tenahî û Alîkarî ya Ewropayê ve, welatên Ewropayên soz dane ku parek ji buha û nirxên hevbeş biparêzin. Di rastî de û di pêxema çêkirina Ewropaya nû de, ev rêxistine alevek bûye bo ji nav birina çend destekî, dubendî û rikeberiyên navbera Rojhilat û Rojava (welatên Rojhilat û Rojavayê Ewropayê). Herwiha Rojhilata Navîn jî hewcehî bi hejmarek nirx û buhayên hevpar û pêkanîna peymanekê li ser bingeha dabînkirina mafê jiyana di rihetî û tenahiyê de ji bo gişt gelan, girûpan û welatên vê herêmê heye.

* Enternasyonala Sosyalîst keyfxweşiya xwe ji vê çendê ku Îsraîl biryara paşdekişan ji Kerta Xeze û herwiha dest berdan li hejmarek ji dagîrkeriyên derdora rûberê Urdinê hilbijartiye, xuya diket. Lê ev kiryara Îsraîlê divêt tevî berpirsyarên hikûmeta filestînê wekî aliyeke din ji gelaleya Xarîteya Rê bihê hevaheng kirin û gotûbêj derheq statûya dawiyê jî di şûn de be. Danûstandin divêt li ser bingeha mafên navneteweyî û biryarnameyên Rêxistina Neteweyên Yekbûyî bimeşin û encama wê jî cîgirkirina dewleteke serbixwe û domdar ya Filistînî bibe.

Em tevahiya ew afirandinan ku di pêxema cîgirkirina aştî û tenahiyê de têne holê hay didin. Wate afirandinên wekî bi awayê pirojekta naskirî bi hevalbendiya Jenevê ji bo aştiyê ku bûye sedema hûrdîtin û micidtirbûna helwestên her du aliyan û her firsend û delîve ji bo aştiyê pêk anî. Di rastî de eva her ew tişt bû ku di beşa sêyem ya Xarîteya Rê de hatibû berçavgirtun.

# Yekê Gulanê û qeyrana bêşoliyê di Îranê de

**Daryûş**



Di çaxekê de Yekê Gulanê, Roja Karker û Kedkarên Cîhanê di welatê me de tê pîroz kirin ku gelên Îranê bi giştî û nemaze qata karker û kedkar di rewş û zirûfekî nebaş de dijîn û roj bo rojê zêdetir gelên welatê me tevî qeyrana giranî, bêşolî û gelek pirsgirêkên din di hemû warên jiyanê de berengar dibin.

Di Îrana bin desthilata Komara Îslamî de, netewên bindest û bi taybetî qata karker, bi terzên cur be cur yên çewisandinê re rû bi rû dibin û bi eşkere tev maf û azadiyên siyasî û civakî û… yên wan têne bin pê kirin. Di çaxekê de ku qata karker, di welatên pêşkevtî de, di rewş û zirûfekî baş de yad û bîranîna wê rojê dikin, li Îranê, karker û zehmetkêşên vî welatî bi giştî û bi taybetî kedkar û zehmetkêşên Kurdistanê cuda ji hejarî û nedariyê tevî zulm û zora neteweyî jî rû bi rû ne. Bindestbûna neteweya Kurd li Îranê hemû warên jiyana vî gelî xistiye bin bandora xwe ya nerênî.

Hevdem tevî perçiqandina karker û çewisandina zêdetir ya wan, her terze azadiyek di vî welatî de hatiye qedexe kirin û bi taybet hêz û bizavên ektîv û çeleng yên karkeran hatine serkût kirin. Di çaxekê de ku Îran bi yek ji welatên stiratêjîk û herî dewlemend di warê çavkaniyên bin erd, di Rojhilata Navîn de tê hesibandin, lê rejîma Komara Îslamî wekî binpêkerê mafê mirovan, bûye sebebkarê herî bingehîn yê herifîn û paremayîya aborî û civakî, geşepêdana îtiyad (kişandina muxedirat)ê, binpêkirina mafên zarok, ciwan û jinan, çavkaniya genîtî û fesada sincî, leş firotin, hejarî û bêşoliya berfireh ya karkeran di vî welatî de ye.

Li gor rapora belavoka lêkolîna aborî ya Rojhilata Navîn "Mîs", zêdetir ji %40 yên gelên Îranê tevî qeyrana bêşoliyê berengar in û di rewşekî nebaş de dijîn. Herwiha ev belavoke di rapora xwe de, îşarê bi vê çendê dike û dibêje: "Qeyrana bêkariyê di Îranê de yê, bûye sebebê zêde bûna îtiyadê, fesadên malî, ji hev veqetiyana jin û mêran (Telaq), xwekuştin, bertîlxwarin û terzên cur be cur yên cinayetên civakî". Dîsan di parek din ya vê raporê de hatiye: "60 ji sedê ya diyardeya xwekuştinê di Îranê de pêwendî bi pirsa bêşoliyê ve heye".

Di dirêjiya vê raporê de behsa vê hindê tê kirin ku nebûna delîveyên karî ên jêhatî bo nifşa xwendekar û pispor yên civaka Îranê, yê bûye sedema hilatina mêjiyan di vî welatî de. Tê texmîn kirin ku salê nêzîk 100 hetanî 225 hezar kes ji pispor û xwandekarên Îranê bi merema bidestveanîna delîvên karî, koçberî welatên derve dibin.

Ji aliyekî din ve, serbarê hebûna wan arîşe û girêpêçkên jorîn dijminatiya Komara Îslamî derheq bi xelkê Kurdistanê roj bi rojê zêdetir dibe. Herêma Kurdistanê ku di warê çavkaniyên bin erd de, yek ji herêmên herî dewlemend ya Îranê ye, lê xelkê vê herêmê ji bêpartirîn û hejartirîn herêma Îranê tên hesibandin. Piraniya xelkê wê herêmê neçar in bo şolkirin û bijîva malbatên xwe, koçberî bajarên din yên welêt bibin û bi nirx û heqdestiyekî kêm, rojê zêdetir ji 12 demjimêran di kûrexanan de bixebitin. Pêşdeçûna bêkariyê, avanekirina kargehan, bi talan birina heyî û samana dewlemend ya Kurdistanê û terxan nekirina hezîneya avedankirinê ji bo herêmên Kurdakincî, parek in ji siyasetên dijî gelî yên vê rejîmê derheq bi xelkê Kurdistanê.

Di çaxekê de ku zêdetir ji %40 nifûsa Îranê, di bin qeyrana bêşolî û hejariyê de dinalînin, rayedarên Komara Îslamî piraniya heyîn û samana neteweyî ya vî gelî bo piştevanî kirin ji hêzên terorîstî, berhemanîna Çekên Etomî û nizamî kirina welêt bi merema qahîm kirina xîmê desthilata dijî gelî û totalîtêr ya xwe bi kar dibe. Herwiha avakirina koşk û talaran di hundir û derveyî welêt, tejî kirina Bankên Rojava ji samanên talan kirî yên welêt û…, parek in ji siyaset û kiryarên her roj yên desthilatdarên vê rejîmê.

Gelên Îranê bi giştî û bi taybetî qata karker di çaxekê de dikarin ji vê qeyranê rizgar bibin û bigihîjine xwest û armancên xwe ku hikûmeta totalîtêr a Komara Îslamî bi tevahî ji nav biçe û sîstemekî demokratîk û bi dûr ji her terze cudahîdananekî regezî, olî, netewî û… bihête ser kar.

**Rêxistina Jinên Kurd yên parêzerê Aştî û Mafê Mirovan li Kurdistana Îranê:**

## Em di hilbijartina Serok Komariyê de pişikdariyê nakin

Rêxistina Jinên Kurd yên parêzerê aştî û mafê mirovan li Kurdistana Îranê de, di daxuyaniyekê de da xuya kirin ku heta demekê ku di Îranê de Neteweya Kurd û Jinan mafê berbijarbûnê nebin, newekheviya neteweyî û regezî dom bike, mafê mirovan bihê bin pê kirin, girtiyên siyasî hebin, Îdam û kevirbarankirin qanûnî be, ol ji hikûmetê cuda nebe, heta çaxekê ku Sîstema Federal Demokratîk di Îranê de ava nebe û ..., em di hilbijartina Serok Komariya Îranê de beşdariyê nakin

# Jin û ceribandina nehem!

Meryem Hacîpûr zelan_kurde2000@yahoo.com

Girîngtirîn û balkêştirîn mijara ku di van rojane de bûye nûçeyê hemû ragihandinan, hilbijartina Serok Komariyê di Îranê de ye. Hilbijartinek ku rejîm ji her demekê pitir, pişikdariya xelkê bo rû bi rû bûn li hember gef û baykotên siyasî yên hundirî û êrîşa leşkirî ya welatên biyanî de bibandor dizane û ji her pêlanekê bo rakêşan û xelitandina xelkê bi merema beşdarîkirin di hilbijartinê de mifahê werdigre. Lê pirsa girîng di vê navberê de pirsa jinan û berbijariya wan ji bo bidestveanîna posta Serkomariyê ye ku di gel yasaya bingehîn ya Komara Îslamî de hev nagire.



Wêne ji malpera: www.iran-emrooz.net

Rejîma Komara Îslamî di heyamê 26 sal desthilatdariya xwe de ji tu zulmekê derheq bi jinan xemsarî nekiriye û bi yasayên dijî jin yên xwe herwiha bi xebata dijî nîviya civakê, wate jinan didome. Di sîstema Komara Îslamî ya Îranê de qanûnên nateba û cudaker ku bingeha wan teng û tesk û fikrên Dînî û kevneperestane ye, dibine sedema wê ku pişikdariya jinan di warên siyasî, civakî û aborî de kêmreng bibe û di rastî de nîviya civakê bêkar û ji xebat û tekoşînê bêpar bin. Lê di Îranê de bi sedema qanûna bingehîn û yasayên medenî yên nerast, delîveya hilbijartina Serkomariyê ji bo jin û Mêran ne wekhev e. Di vê hilbijartinê de Jin tenê rola hilbijêr dilîzin û nikarin bihêne hilbijartin. Eva jî bi xwe eyankerê vê rastiya tal e ku di Îranê de hêj bi Jinan wekî rihberekê tê nihêrîn ku di astekî zor nizimtir ji Mêran de cih girtine û karîn û şiyana birêvebirina welatekê ninin. Eva jî di halekê de ye ku di zaf ji welatên cîhanê de, Jin di sertirîn(yekem) posta welat de ne û bi başî erkê xwe birêve birine û dibin.

Rastiyeke din ku di rejîma Komara Îslamî de heye, eva ye ku berpirsiyarên Komara Îslamî û desthilatdarên dijî demokrasiyê cehd û bizavê dikin ku ji bo bidestveanîna dengê Jinan û mifah wergirtin ji dengê piraniya xelkê bi awayê nimayişî, dest bi dirûşmên berevanî û parêzvanî ji mafê jinan didin. Ev siyasete di midehê 26 sal desthilatdariya reş a rejîmê ji aliyê hemû berbijêrên hilbijartinan ve hatiye bikar anîn, bi terzekê ku mînaka zindî ya wê di 8'mîn gera Serok Komariyê û ji aliyê Mihemed Xatemî ve hate dîtin.

Bi baldan bi van pirsên jorîn û nirxandina rewşa nihoyî, nêrîn, bas û qalên cur be cur di tevgera Jinan û di nava çalakên berevanker yên mafên Jinan li ser terzê berengarî û mifah wergirtin ji delîve û fersendên han yên hilbijartinê di rojevê de hene. Lê erka Jinan bi baldan bi ceribînên rabihorî di vê navberê de aşkera û eyan e. Ew bi baykotkirina hilbijartinê dikarin bi civaka cîhanî bidine xuya kirin ku rejîma Komara Îslamî ne tenê çi ji xwestek û daxwazên wan bi cih ne anîne, belkî cehd û tekoşîn di perçiqandina zêdetira ya wan de kiriye. Ew divêt bizanin ku bi hebûna yasaya bingehîn ya niho û desthilatdariya Melayan ku ol û hikûmet bi hev re têkel kirine, xwest û daxwazên wan dê li çarçoveya dirûşman de bimînin û tu tîrojkeke hêviyê nahête xuya bûn. Lewre pişikdarî nekirin di hilbijartinê de dikare gaveke erênî û bibandor di pêxema armancên jinan û jinav çûna herçiqas zûtir ya Rejîma kevneparêz ya Komara Îslamî be.

## Tonya Kebûdwend li hember darizandinê de ye



Tonya Kebûdwend, berpirsiyarê para Jinan û endamê şêwra serokatî ya Heftenameya daxistî ya **''Peyamê Merdom''** di roja çarşemî, 4'ê Gulanê li bajarê Sine dê bihête dadgehî kirin. Ew bi dadgeha giştî ya Sine hatiye gazî kirin û da zanîn ku ew ne haydarê tawana ku li ser de hatiye sepandin. Ji bilî xatûna Kebûdwend, Celal Qewamî, Kawe Husên Penahî û 6 nivîserên din derheq bi vê Heftenameyê bi dadgehê hatine gazî kirin.

## Zêdebûna serhejmariya xwekuştinê li Parêzgeha Kurdistanê



Li gor rapora berpirsiyarê Nojdarê qanûnî yê bajarê Sine, serhejmariya xwekuştinê di nava ciwanan di sala 1383'an de bê mînak bûye. Zortirîn qasê xwekuştinê di astê parêzgehê de xwe şewitandina keçan li Merîwanê bûye. Di nava Mêran de jî bajarê Sine zortirîn qasê serhejmariya xwekuştinê pêk tîne. Herwiha bajarê Bane jî kêmtirîn derseda xwekuştin pêk tîne ku ew jî ji rêya Derzî û xwarina Heban ve bûye.

# Sînemaya Kurdî, Start

Soran Rezayî /soranrezai@yahoo.com



Ji çend salên rabihurî heyanî niha em dibihîsin ku li vir û wir de basa Sînemaya Kurdî tê kirin, di vê gotarê de em dixwazin pênaseyekî kurt ji Sînemayê bikin û bidin zanîn ku gelo Kurd dikare xwe bi xwediyê Sînemayê bizane yan na? Di pêş bersîvdana vê pirsyarê divê bihê zanîn ku Sînema çi pênaseyekê bi xwe ve digire, piştre em dikarin bibêjin ku gelo em xwedî Sînema ne, an na.

Dema ku em bikarbin ev pirsên jêrîn bigihînin qonaxa piratîkê, vî çaxî em dê bibin gelekî xwedî Sînema.

**Hewcehiyên avakirina Sînemayê:**

1- Alavên berhemanînê, Labratwar û bajarokê Sînemyî: ji bo vê çendê jî gereke hem hikûmet û hemû sermayedarên Kurd ji vê pirsê ra xwedî derkevin û hewil bidin ji bo kirîn û anîna alavên pêwîst ji derveyî welêt û herwiha avakirina bajarokê Sînemayî.

2- Gazîkirina Sînemakarên lêzan û pispor yên Kurd û biyanî ji derveyî welêt bo hundurî welêt û avakirina zandor û kursên hînkariyê ji bo amator û xwazyarên wî warî.

3- Avakirina Zanîngeha Sînemayê û pêşdebirina vê di sîstema perwerdehiyê de.

4- Avakirina holên nimayîşdana fîlmê (Sînema).

Ev çar xalên navbirî çar mercên sereke ne di avakirina Sînemaya Kurdî de ku gereke were cî bi cî kirin. Xincî wana çend mercên din jî hene ku bi bê wan tiştek bi navê Sînemaya Kurdî bê wate ye. Yek ji wan ji holê rakirina çanda şaş ya **Sînema Bîziyê** ye ku di parek ji Kurdistanê de (Başûr) ev çend heye û xelk li wir Sînemayê bi cihekî nebaş û karêk nehêja dizanin, ev baverin ku Sînema cihê pêşdebirin û rêklam kirina karên bê sinc û exlaqî ye. Mixabin ev baweriya han serçave ji çanda rizî ya serdmê Sedam Husên digire ku xwe xizandiye nava civaka Kurdewarî de, bi awayekê ku hêj xelkê nekarî ye Sînemayê binasin û tevî wê pêk bihên. Yek ji mercên din çandsaziya nû ye, ev jî ji bo vê çendê ye ku civaka me bikaribe Sînemayê bi başî binase û bibe palpiştekî madî yê vê hunerê. Wî çaxî sermayedar û fîlimçêkerên Kurd dê bikaribin bi arxayînî û bê xemî û bi hêviya ku wan dê temaşavanên Kurd hebin, dest bi karê xwe bikin û fîlmên Kurdî berhem bînin.

Dema ku gişt mercên jorîn hatin cî bi cî kirin û di salê de qasî 20 Fîlmên Sînemayî yên Kurdî saz bûn, wî çaxî em diakrin bibêjin ku me Sînemaya Kurdî heye. Nexwe niha tiştek bi navê Sînemaya Kurdî tune ye. Ev çende rastiyekî haşa hilnegir e ku bi 2-3 Fîlmên **Behmen Qubadî** û Fîlmekî **Huner Selîm,** Sînemya Kurdî ava nabe. Ji aliyekî din Kurdistan ku ji çar parçeyên sereke pêk tê, ketiye nava sinûrên çar welatan de ku di parçeyekê de Kurdan her nasname jî nine û bi awayekê hatine veşartin. Di parçeyekê de hebûna wan tê înkar kirin û bi Turkên Çiyayî tên navdêr kirin. Parçeyekî din girtîgehekî mezin e ji bo hemû Kurdan û di parçeyekî din de jî piştî enfal, kîmyabaran û herifandina gundan, taze Kurdên wira dixwazin serê xwe hildin û nefesekî azad bikişînin, nebûna Sînemayê ne eyb û ar e. Kurdan heyanî niha tenê karî ye berevaniyê ji xwe û xaka xwe bikin, ku wiha be ev dê çawa bikaribin Sînemayê ava bikin?! Lê dema ku Sînema jî ava kir, dê pir be ji peyv, pir be ji hawar, pir be ji gazî û pir be ji mijar ji bo hemû cîhanê.

Hêjayî gotinê ye ku bas li ser Sînemayê tiştek nine ku di gotarekî wilo de bi dawî bihê, lê em dê di hejamrên din de jî dom bidin mijara xwe û biçin kûrahiya wê.

## Xelata Aramê TÎGRAN û hisên nû




Di van rojên borî de, dorhêla muzîka Kurdan, ji bo pêncî saliya hunera Aramê Tîgran xelateke pir bi wate bi kedeke hevbeş diyarî Aramê Tîgran kirin. Bi rastî dilxweşî, coş û roniya çavên Aram dîmenekî awarte bû... Dil dixwaze ku îro pê de kesên ku xizmeta wan ji bo kurdan û çanda wan re bûye her tim bên şanaz û serbilind kirin û wek kevneşopiyekê ev kar berdewam bibe.

Çanda Kurdan a nûjen, bişkokên xwe hêj nû dibişkivîne. Lê ew çand li ser bingeheke xurt bilind dibe. Kedkarên nifşên berê yên me, kedeke giranbiha tevî vê çandê kirine. Dema wan bingeha xwe amade kirine, kevir, xerc bi hostetiyeke hêja danîne ser hev û avahiya xwe pêk anîne.

Em baş dizanin karê ku wan kiriye li ser çanda gel bûye avahî. Her yekî di qada xwe de çanda gel hildaye, ji xwe tiştek tev lê kiriye û ji nû ve honandiye. Wek Ehmedê Xanî ku Memê Alan ji nû ve honandiye û berhemeke wek Mem û Zînê jê derxistiye. Ji vê hewl û kedê çanda nûjen derdikeve. Çanda nûjen jî bi xwe re navên nûjen derdixe rastê; wek Celadet Bedirxan, Cegerxwîn, Osman Sebrî, Aramê Tîgran, Nuredîn Zaza, Memet Uzun û bi dehan kesên din ên hêja.

Aramê Tîgran, di dilê kurdan de cihekî giranbiha girtiye. Wî, ev xelat û yên mezintir zêdetir heq kiribû. Aramê Tîgran, strana guhên zaroktiya her Kurdekî ye. Lê em êdî îro dikarin wî çavên serê xwe jî bibînin

**Ji malpera www.azadiyawelat.com hatiye wegirtin.**

# Şêrko Bêkes: EZ NIKARIM HELBESTÊ JI HERIKÎNA XWÎNA DAYÎK Û ZAROKÊN KURD CUDA BIKIM

**Hevpeyvîn: Emîr Şuaîvend**

**Helbest xemla ziman e û ziman nasnameya gelan e, û herwiha ew hîmekî qahîm e ku dîroka gelan li ser da dimeşe. Helbest xwedîka zelal ya rengan e ku hemû ciwanî, nermî û narîniya xwezayê tê de dixuye. Ev gelek caran şûrê şer û mertalê berxwedaniyê ye ku di dîroka gelê me de bi kevintirîn destnivîs tê hesibandin.**

**Kurdistan ji dûr zemanan heyanî niha di bin bahoza zulm, zor û dagîrkeriyê de bûye, lewra helbesta Kurdî pêtir di çepera berxwedaniyê de cih girtî ye. Pir in ji wan helbestvanên me yên ku di vî warî de kedên giran danîne û şakarên bê mînak afirandine, yek ji wan helbestvanên herî navdar ku îro jî di jiyanê de ye, mamosta Şêrko Bêkes e. Ev xelkê bajarê Silêmaniyê û Kurê helbestvanê navdar Bêkes e. Zmanê helbestên Mamosta Şêrko hertim mertalê berxwedaniya gelê me di hember zulm û zora serdestan de bûye. Wî heyanî niha 25 berhem wekî helbest ji çapê derbas kirine ku piraniya wan bi zimanên biyanî jî hatine wergerandin. Me xwast ku ji nêzîk ve haydarî kar, xebat û ramanên Mamosta Şêrko Bêkes li ser hunera helbestê bibin, lewre me hevpeyvînek bi wî re pêk anî ku em deqa wê di jêr de dixin ber çavên we xwendevanên hêja.**



**Birêz Mamosta Şêrko, di destpêkê de em dixwazin ku hûn hinek li ser jiyana xwe ya taybetî û çawaniya destpêkirina karê xwe yê hunerî ji xwendevanên me re biaxivin.**

Bi kurtî dikarim bêjim ku ez di sala 1940'an de li bajarê Silêmaniyê ji diya xwe bûm. Min xwendina xwe ya destpêkî û navendî li bajarê Silêmaniyê û xwendina pêşesazî li Bexdayê bi dawî anî. Yekem dîwana min ya helbestan di sala 1968'an de li bajarê Bexdayê hate çap kirin. Min di sala 1970'an de bi hevkariya çend helbestvan û çîroknivîsan yekem weşana wêjeyî ya bi navê **"Ruwange"** li çapê xist. Min 2 caran berê xwe daye çiyayên Kurdistanê û tevlî şoreşa berxwedaniya gel bûm. Di sala 1975'an de min yekem qesîdeya xwe ya bi navê **"Koç"** nivîsand. Di sala 1986'an de ez derketim derveyî welêt. Di sala 1987-1988'an de ez bûm bi xwediyê Xelata **Tofoskî** ya ser bi Yaneya Qelemê Swêdê. Heyanî niha parek ji berhemên min bi 10-12 zimanên cîhanê hatine wergerandin. Di sala 2001'an de ji aliyê dezgeha Xak ve Xelata **"Pîremêrd"** bi min hate bexşîn. Heyanî niha min 25 dîwanên helbestan bi zimanê Kurdî li çapê derbas kirine. Min di sala 1965-1966'an de yekemîn helbesta xwe nivîsand.

**Wekî ku hûn dizanin nêrînên cur be cur seba helbestê hene, hûn wekî xwe helbestê çawa pênase dikin?**

Kesek nine ku pênaseyekî diyar û sinûrdar ji bo helbestê hebe, wekî ku çawa em nikarin jiyanê bi rengekê bixemilînin yan ku bixin nava çarçoveyekê. Helbest jî her wisa ye. Her ji ber vê çendê ye ku ji serdemê Eflaton heyanî niha helbest bi hezaran rengan hatiye pesin kirin. Em dikarin bibêjin ku helbest xwediyê gişt wan pênasane ye, lê di halekê de jî xwediyê tu ji wan pênasan nebûye. Bi raya min ev newekheviyane vedigerin bo warên cur bi cur yên helbestê. Her helbestvan yan jî rexnegirekê pêka meyl û lêkdana xwe helbest şirove kiriye. Ev çende dibe sedam hatine rojeva nêrînên cur be cur. Bo mînak **Romansî** helbestê xwezayî dizanin û bi çavê xeyal lê dinêrin, berevajî, **Rêalîzm** ku pêtir eqlanî ne, helbestê di cîhana rojane de zeq dikin. **Sorêalî** her bi giştî berevajî hemû nêrînên din derdikevin û wateyekî din didin helbestê, ew bawer in ku helbest bê sinûr e û ziman di nava vê de beredayî ye, bi awayekê ku dikare orf û adetan biguhere û hemû wateyan ser û bin biket. Renge min bi xwe çend pesnên cur bi cur ji bo helbestê hebin, helbest li bal min balindeya ziman û nepeniya vê hunerê ye ku têgihîştin ji vê heya qasekê giran û zor e! Ez dikarim zaftir helbestê şirove bikim û wateyên cur bi cur bidim helbestê. Lê rawestgehek nine ku mirov bisekinîne û bibêje



tevav, eva helbest e!

**Birêz Şêrko hûn di helbestê de pêtir giraniyê didin çi aliyekê?**

Helbest riha di nava ceste de ye ku mirov nikare endamên wî cesteyî ji hev cuda bike. Bi wateyekî din di wî cesteyî de ji rehên herî biçûk ve bigire heyanî demar û hêstikan, gişt hev û du dikemilînin. Ziman riha helbestê ye, ev yek tê wateya vê çendê ku ger ziman nebe, helbest jî tune ye. Aheng û muzîk liva nava helbestê ne, ger ku livîn nebe, jiyana helbestê tune ye. Wate dişibe çirayê hember helbestê, heke ku çira nebe, birêçûn, têgihîştin, heyirandin û wêne tune ye. Form pencereya helbestê ye. Herwiha ev hîmek e ku helbest li ser vê disekine, ger ku ev nebe hiloşîn û herifîn çê dibe. Xeyal tê wateya firîna helbestê yan jî ev fantaziyayek e ku helbestê ji xeberdana asayî cuda dike. Niha em dikarin bibêjin ku helbest avahiyek e ku ji kevirekê heyanî sitûnekî mezin, dîwar û herwiha pirtik bi pirtika wî avahiyî bi hev re girêdayî ne. Ez wekî hemû helbestvanên din girîngî û pûteyê bi gişt pêkhatên helbestê didim. Helbest nivîsandin curek hostatî ye, gereke mirov bizanibe çi dike, lê dîsan heke ku mirov di wî karê xwe de berhemekî ronakbîrî û ezmûnekê çê neke, ev ne hostatî ye. Ez nirx û buhayê didim bi gişt karên nava tabloyên xwe, ji reng ve bigre heyanî valahî, hêl û heyanî digehe ser hilbijartina çarçove û navê tabloyê.

**Bi raya we di dema îro de helbesta Kurdî di çi qonaxekê de ye?**

Bi raya min helbesta Kurdî îro tûşî hindek nexweşiyan bûye ku çareseriya wan nexweşiyan jî gelek asan nine. Ji xwe merema min ji piraniya wan helbestan e yên ku rojane di rojname û weşanên din de derdikevin (zimanê siqet). Di helbestên han de nêrînên helbestvan bê ser û ber û nexuya ye û ev bi xwe jî nizane ku çi dibêje. Ev ne şahrezayî û ne pisporî di darêtin û çêkirina bingeha helbestê de ye. Ev bê hay in ji hunera helbestê û bizarî helbestvanên din dikin. Di encam de ev modên helbestê tevlîhev dikin. Lê berevajî hin helbestên xweşik jî hene ku bi bê tu pasepoertekê digehine hemû dilan. Her çiqas ku ev mînakane kêm in jî, lê di her dem û zemanekê de jî her ev kêmane helbest bûne.

**Gelo çima piraniya helbestên Şêrko zimanê buyer û karesatên Kurdistanê ne?**

Ez her di zarotiya xwe de di bin keprekê de ji diya xwe bûm ku wê helbest û Kurdayetî bi hev re civandibûn. Bêkesê bav, [bavê Şêrko jî helbestvanekî navdar yê gelê me bû] Bêkesê helbest û di vê demê de jî Bêkesê nava bûyeran de bû. Ev serokê serhildana 6'ê Eylûla sala 1930'an bû. Dema min ji xwe fam kir, helbestên bavê min hindavî serê min bûn, piştre dema ez gihîştim temenê lawîtiyê, ketim nava lehiya serhat û bûyeran de. Me bi çavê xwe herikîna xwîna gelê xwe didît. Em di serdemê çav vekirinê de bûn ku mirovê Pêşmerge serî hilda. Şoreşa Eylûlê teqî. Em ketin çiya. Me ji nêzîk ve ji gundên şewitî û goriyên wan dinêrî. Serdemê lawîtiya me serdemê agirbaranê bû. Min bi xwe jî nedikarî dest ji kumê xwe ve bigirim ku ba nebe! Min nedikarî helbestê ji herikîna xwîna dayîk û zarokên Kurd cuda bikim. Helbest ji xwîna wan qurbaniyan pîroztir nebû, lê her tim ev çende li ber çavê min bû ku hunera helbestê bilind rabigirim û nekem bi pêxura dirûşmên rût û qut. Ez di nava ba û bahozên han de bûm ku ketim nava cîhana helbestê. Qedera helbest û qurbaniyan ez dorpêç kirim.

Min di gelek hevpeyvînên xwe de ev çende dubare kiriye ku karê min di helbestê de ax kulan di nav birînên gelê min de ye. Min dirêjî bi vê ezmûnê daye û hemû cehda min pêşdebirin û dewlemendkirina vê hunerê bûye û her car min xwastiye gurzekê bixim ser coxîna helbesta Kurdî. Ji xwe piraniya berbiçav ya berhemên min di vê pêvajoyê de herikîne. Dengê helbesta min di gelek dîwanên min de dengê buyer û aliyên cîhanî bûye. Jin wekî dayîk û xweştivî, giyan û ceste jî di helbestên min de xwedî rûmet in. Herwiha ger hûn ji gişt helbestên min binêrin, dê bibînin ku **xemên mirovan ji hemû aliyên cîhanê ve li bal min bûne bi curek ji peyama helbestê.** Lê Kurdistan û tirajêdiyên vê di pileya yekem de cih digirin, ji ber ku ev dergûşa ziman û peyva min in. Lê her di vê demê de jî hemû tiştên xweşik û hemû reng, rengdan bûn.

**Mamosta bi raya we çima wêjeya Kurdî bi giştî û helbest bi taybetî ketine mala wêjeya berxwedaniyê?**

Wêje di bin her nav û nîşanekê de be, her wêje ye. Eva ku bi **wêjeya berxwedanî** hatiye binav kirin, qonaxek ji qonaxên →

jiyana gelê me wekî piraniya gelên cîhanê ye, bo mînak gelên Rûsya, Fransa, Spanya, Amerîkaya Latîn, Afrîqa û gelek welatên din ev qonaxe şopandine û heyanî niha jî wêjeya berxwedaniya şerê duyem yê cîhanê di weşanên wan de tên dîtin û ev wêjeye bûye parek ji çanda wan gelan. Ev çende bi **"ketine"** nava vê xaneyê, nayê bi nav kirin.

Gelê me ji dema ku hebûna xwe hîs kirî ye heyanî niha, di bin îşkenceya dagîrkeran de bûye, gelê me ji hilmijîna hewayê azadî û serfiraziyê hatiye bê par kirin, zimanê wî gelî wekî teyrekî per û bask şikandî bûye. Ji xwe dema jiyanek wiha be, helbest jî dibe rengvedana vê jiyanê, ji ber vê çendê gelek xwezayî ye dema ku parek ji wêjeya wî gelî wêjeya berxweder be. Ev pêvajoya han ji Ehmedê Xanî ve dest pê dike û li bal Hacî Qadirê Koyî digihîje astekî bilind û berbiçav û di serdemê Bêkes [bavê Şêrko] û hevalên wî de dibe bi curek ji peyama helbestê. Heya roja ku azadî bihê dorpêç kirin û heya dagîrkirina axekê di rojevê de be, ev wêjeye jî tim wê berdewam bimîne, lê di hemû demekê de merema me ji wêjeyê û gotara helbestî ye, ne gotara siyasî û gazîkirina îdeolojiyê.

**Mamosta bi giştî berhemên te yên çap bûyî kîjan in û piroje yan jî berhema te ya pêşerojê dê çi be?**

Wekî ku min îşare pê kir heyanî dema niha 25 berhemên min wekî pirtûkên helbestan bi Kurdî hatine weşandin. Eva jî nayê wateya vê çendê ku gişt helbestên min gorî dilê min in. Na, di cîhanê de helbestvanek ku gişt berhemên vî di astekê de bin tu ne ye. Wekî çawa ku hemû salên jiyana mirovan ne wekhev in, helbest jî tiştekî wiha ye. Dîwana min ya dawiyê bi navê **"Surode Berdînekan"** bû, ez nizanim pirojeya min ya pêşerojê dê çi bibe, ev çi be jî dê di dema xwe de serî hilde û bikeve ber çavê hemûyan.

# Ronakbîrê Kurd Şamîl Esgerov çû ser dilovaniya xwe



**Mamosta Şamîl Esgerov li ser korsî rûniştiye**

Şamîlê Selîm Esgerov ku helbestvan, Kurdolog, etnograf, wergêr û **yekem şervanê Kurdên Azerbaycanê** di roja 20'ê Gulana 2005'an de di 77 saliya xwe de çû ser dilovaniya xwe. Şamîl Esgerov, ku di sala 1928'an de li Kurdistana Sor li gundê Axçakentê, bajarê Kelbecerê hatibû dinê, hê di ciwaniya xwe de bi dîrok û edebiyata Kurdistanê re, ku wê demê nav û dengê wê jî li holê nîn bû, eleqedar bûye.

Dibistana navîn û ya amadeyiyê di dereceya baş de qedandiye û paşê jî dibistana mamosteyî ya bilind a dewleta Azerbaycanê, pey re dibistana bilind a partiyê li Bakûyê û Zanîngeha Pedagojî ya Azerbaycanê xilas kiriye. Her sê dibistanên bilind bi "madalyona zêr" kuta kiriye.

**40 pîrtûk nivîsand...**

Li bajarê Kelbecera Kurdistana Sor edîtorê rojnameyê, serokê rêxistina ciwanan "Komsomolê", mudîrê dibistanê, waliyê bajêr, mudîrê perwerdeya bajêr, serokê mûzeya dîrokê bi rengekî navdar daye meşandin. Di dema seroktiya Şamîl Esgerov de, rêxistina ciwanên Kelbecerê di gelemperiya Yekîtiya Sovyetê de, di "pêşbirka sosyalîst" de rêza yekem girtibû.

Esgerov li bajarê Bakûyê ji teklîfên ku bibe rektorê Zanîngeha re gotiye na û mayîna li Kelbecerê tercîh kir, ku bêhna Kurdayetiyê jê werdigirt. Di sala 1993'an de piştî ku Kurdistana Sor ji hêla artêşa Ermenîstanê ve hate dagirtin, bi neçarî jiyana xwe wekî penaber li bajarê Bakûyê domand.

Ronakbîrê Kurd bi xebatên xwe yên edebî û zanistî li Yekîtiya Sovyetê û li derveyê welêt weke şexsiyetekî navdar dihat nasîn. Tevî ku bi xwe matamatîksiyen bûye, bi Kurdî û Azerî helbest nivîsandiye. Edebî, etnografî, dîrokî û hunerên estetîkî di serî de nêzîkê 40 pirtûkan nîvisandiye.

**"Mem û Zîn" wergerand zimanê Azerî**

Şamîl Esgerov, li ser xebatên edebî yên Cegerxwîn teza xwe ya doktoriyê nivîsandiye, destana "Mem û Zîn" a Ehmedê Xanî wergerandiye zimanê Azerî. Wekî din jî, di serî de ji Feqiyê Teyran, Melayê Cizîrî, Evdirehman Hejar û Evdila Goran bi sedan helbestan bi zimanê Azerî bi lêv kiriye.

# pirtûka çîrokan ya Dilbixwîn Dara "PENABER" derket

**Nivîskar: Dilbixwin Dara**




Çîrokên di pirtûkê de serpêhatî û jiyana penaberiyê raber dike. Pirtûk ji 16 çîrok û 136 rûpelan pêk hatiye.

Di derbarê **PENABER** de

Ev pirtûk lênûska "**Penaber**" e. Di reşerojan de, gotinên ku ji nav tayê, panîk û bêçariyê xwe ji lêvê bera ser kaxizê dane ye. Dostanî, bext û bêbextî, hezkirin, dilsozî, tenêbûn, neçarî, bêrîkirin û hesret, xizanî, kêmþansiya nivîskarê bi zimanê kurdî, ez, tu, em in...

Bi kurtî, janên ku di nava henekan de direqisin!

Janên ku ji bajarê Kurdistanê, bi hêviya ku li bajarê Ewropayê rawestin, bi çargevkî dane ser riya "penaberiyê"; lê li wir bûne naveroka van çîrokên li ber destê we û niha di nav rêzikan de, li hemberî rûyê jiyanê yê bêwijdan li ber xwe didin.

Çîrok; bi têgih, gotinên pêşiyan û biwêjên Kurdî, bi hêza henek, qerf û tinazên ku di civata Kurdan de, tam û rengê jiyanê yê rojane ne, hatine xemilandin. Zimanekî rojane û herikbar hatiye bikaranîn, ew nahêle ku hilma mirov biçike.

Kelepor û edetên berê ku bûne motîf ji van çîrokan re digel şîrovekirineke sade û realîst, nivîskar dike xwediyê vegotineke resen. Ango mirov dikare bêhna Çehov û Azîz Nesîn bike, ji şêweyê nivîskar.

**Ji malpera www.nasname.com hatiye wegirtin.**

# Li me biborin

**Xwandevanên hêja yên Agirî!**

Di vê hejmara weşana Agirî(19) ku li ber destê we de ye, mixabin ji ber zêdebûna daxuyanî, gotar û nivîsan, me nekarî doma gotarên: 1. **Demokrasî, buha û piratîka wê**, beşa 12'an û 2. **Urmiye di coxrafiya siyasî ya Kurdistanê de**, beşa 2, biweşînin. Em dê bihewilînin di hejmara tê ya Agirî de wan belav û pêşkêşî we rêzdaran bikin.

**Desteya Nivîskar ya Agirî**

# XAÇEPIRS

**A: Emîr Şuaîvend**




**Asoyî**
1.Helbestvanekî Kurd
2.Standardekî cîhanî - Navekî Kurdî
3.Ez û tu – Bajarek li Kurdistana Îraqê – Hejmarek e
4.Êre – Herî
5.Hêmin – Kore mişk
6.Çemekî navdar li çiyayê Elegezê
7.Bê şerm – Şûn pê
8.Bê tirs û eman – Kirr û bêdeng
9.Dengê neyar – Zandor – Ger wa ye
10.Şerab – Dêm nine
11.Pirtûka navdar ya Osman Sebrî

**Stûnî**
1.Hevpeyman
2.Jiyan ji dest da – Em bi Soranî
3.Parçeyek e – Tevin kirin – Peyvekî pirsiyarî
4.Zehmet – Pez bi Soranî – Wacib
5.Balindeyekî efsaneyî – Rêya Şemendefirê
6.Her Duktorekê heye
7.Ast – Zana
8.Du bi Turkî – Bapîrê bavê mirov – Îşrare bi nêzîk
9.Di Soranî de heyf hilanîna miriyan – Tevena cemedê – Rojekî heftiyê
10.Gewherekî qîmetî – Dest jê kêşan
11.Yekem Rojnameya Kurdî



**Bersîvên hejmara 17**

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | a | m | o | j | | m | a | s | t | |
| 2 | k | ê | l | | k | o | t | î | | w |
| 3 | a | j | | w | i | r | a | | s | e |
| 4 | m | | t | e | n | î | | k | e | v |
| 5 | | c | i | r | c | | r | o | m | î |
| 6 | t | e | r | z | | ş | a | f | î | |
| 7 | a | r | î | | m | a | v | î | | x |
| 8 | û | d | | ş | e | n | e | | ş | e |
| 9 | n | | w | ê | j | e | | n | î | r |
| 10 | | y | a | x | î | | h | e | w | z |

Peyva veşartî: n e w r o z (1 2 3 4 5 6)

agiri

Rojnameyeke mehane ya siyasî û çandî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php

**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE
**E - Mail:**
**rojnama_agiri@yahoo.com**
**agiri2003@hotmail.com**

**Nûnereke Parlemana Otrîşê got:**

# Me hin belge derheq beşdariya Refsencanî di derkirina destûra terora Dr. Qasimlo di dest de hene



Nûnereke Parlemana Otrîşê ji Partiya Keskan, roja duşemî 23'ê Juna 2005'an, da zanîn ku vê dawiyê hinek belge bi destve anîne ku diselimîne, Ekber Haşimî Refsencanî, berbijarê Serok Komariya Îranê di derkirina fermana terora Dr. Ebdulrehman Qasimlo û du serokên din yên Kurd de Beşdar bûye. Siyasetvaneke Partiya neyar ya Otrîşê, di roja 23.05.2005'an de da xuya kirin ku wî hin belge bi destve anîne ku nîşan didin, Ekber Haşimî Refsencanî, berbijarê Serok Komariya Îranê, rasterast fermana terora Dr. Ebdulrehman Qasimlo di sala 1989'an de der kiriye.

Berdevkê Partiya Keskan Pîtêr Pîlîts di hevpeyvînekê de bo ragehandinên giştî got: çavkaniya agahiya wî, rojnamevaneke Îranî ye ku sê rojan berî niha li Vêrsayê pê re hevdîtin pêk anîbû. Rêzdar Pîlîst anî ziman: Ev jêdere, amade ye li hember her berpirsiyareke Otrîşê de gotarên xwe bîne ber bas û ez dê hemû şiyan û karîna xwe bi kar bînim ku ev dosye vebe. Li gorî nûçeyan, wî jêderî bi sedema meseleyên ewlekariyê bi **D** dê bihê nav kirin û di vê dawiyê de piştî wê çendê ku li mala wî geryane, Îran bi cî hêla ye. Vî serokaniyê di dawiya sala 2001'an de ji rêya Tîmsareke berê yê Sipaya Pasdaran ve, hinek agahî bi dest xistine ku dide xuya kirin, Ekber Haşimî Refsencanî di terora Dr. Qasimlo û du Kurdên din de dest hebûye.

Birêz Pîlîts ku nûnerê Parlemana Otrîşê ye dibêje ku: Min hin zanyarî û agahiyên ne belavkirî yên Polîsê Otrîşê di derbarê wê bûyerê de ku 16 salan berî niha qewimî, dîtine hetanî tevî zanyariyên çavkaniya Îranê de



**Refsencanî mezintirîn terorîstê Komara Îslamî ya Îranê**

binirxîne û bigihîjîne encamê.

Rêzdar Pîlîts got: Li koma 6 kes ji wan berbijarên ku ji bo hilbijartina Serok Komariyê di 27'ê Cozerdanê de hatine pejrandin, gumanên bihêz hene ku 3 kes ji berbijarên han di terorên navneteweyî de beşdarî kiribin.

Rêzdar Pîlîts dibêje: ji bilî Haşimî Refsencanî ku tê pêşdîtin kirin cihê Mihemed Xatemî bigire, du kesên din jî pêkhatine ji: Muhsîn Rezayî, Fermandarê berê yê Sipaya Pasdaran û Mehmûd Ehmedî Nijad, Şaredarê niha yê Tehranê.

Hêjayî gotinê ye ku di bervara 13'ê Juena 1989'an de, Dr. Ebdulrehman Qasimlo, rêberê Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê û du kes ji kadroyên payebilind yên Partiyê li Viyen, Paytexta Otrîşê bi destê 3 kesên çekdar ku tê gotin hin ji wan paseporta dîplomatîk hebûne, hatin teror kirin. Van sê kesane axa Otrîşê bi cih hêlan û tu kes jî di wê derheqê de nehatiye girtin.

**Jêder:**
**www.radiofarda.com**

# Avabûna Komeleya Çandî û Hunerî ya ÇIRA li Amedê




Bo cara yekemîn li Amedê di roja 28'ê Gulana 2005'an de, Komeleya Çandî û Hunerî ya ÇIRA dest bi xebat û tekoşînê kir. Di daxuyaniya damezirandina wê Komeleyê de Armancên xebatên Komeleyê wiha hatine: Geşkirin û xurtkirina çand û hunera Kurdî, pêşvebirin û dewlemendkirina zimanê Kurdî, pêşîlêgirtina asîmilasiyonê û helandina ciwanên Kurd li Kurdistan Turkiyê hatiye.

